# BasNûçe

HERDEM RASTÎ

ISSN 2148-5305

Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL

Hejmar: 78 16 - 22 Mijdar 2015 basnews.com




Dêra Zahferan'ê erdê xwe vergirt

R16

## Şengal azad e

# Serfiraziya dîrokî

Di encama 'Operasyona Azadkirina Şengal'ê' de hejmarek mezin ji çekdarên DAIŞ'ê mirin û gelek jî birîndar bûn. Hêzên hewayî yên koalisyona navdewletî jî piştgiriya Peşmerge kirin. Di şer û pevçûnan de 2 Pêşmerge jiyana xwe ji dest dan. Niha rê û malên Şengal'ê ji kemînêyên teqemeniyê tên paqijkirin.

Serfermandarê Operasyona Şengal'ê Mesûd Barzanî li Çiyayê Şengal'ê axifî û got; "Pêşmerge bi xwîna xwe destanek nivîsiye û tola kurdên êzdî stendiye. Birayên me yên êzdî ne tenê û ne bê xwedî ne, gele Kurdistan'ê hemû bi wan re ye û me îro me vê yêkê isbat kir, êdî keçên êzdî dikarin bi serbilindî bimeşin."



R02-3-4



R12

## Êzdî kî ne?

Cûdahiyên êzdatiyê yên ji olên din di babetên din de derdikevin pêş û ev babetên din dikarin bibin sedemên êş û azarên mezin. Ev babetên din şayanî lêkolînê ne, lê belê ji ber ku belge û zanyariyên nivîskî yên di derbarê êzdayîtiyê de pir kêm in û li ser yên heyî jî di derbarê reseniya wan de nîqaş têne kirin.

Prof. Dr. İlhan Kızılhan:

## Divê Şengal bibe sembola jenosîdê



Akademisyenê êzdî Prof. Dr. İlhan Kızılhan li ser rizgarbûna Şengal'ê, niqaşên statûya Şengal'ê, derûniya xelkê Şengal'ê rawestiya. Kızılhan da zanîn ku divê komelgeha kurd karesata li ser Şengal'ê ji bîr neke.

R08-9

R05

## Li Şengal'ê çi bû?

Peytexta êzdatiyê R10-11

## LALEŞ

R13

## 'Sozê azadkirina Şengal'ê, bi cîh hat'

# 'Keçên êzdî êdî wê bi





Wargeha êzdiyan a dîrokî Şengal, 3'yê Tebaxa par ji aliyê DAİŞ'ê ve hatibû dagirkirin û piştî 15 mehan roja pêncşema borî di encama 'Operasyona Azadkirina Şengal'ê' de ji aliyê hêzên Peşmerge ve bi giştî hat rizgarkirin. Di operasyona ku li jêr serfermandariya Serokê RHK'ê Mesud Barzanî de bi rêve çû de, ji aliyê 20 hezar Pêşmerge ve hat birêvebirin. Li gor ahagiyan û 7.500 Peşmerge jî darbasî nav Şengal'ê bûn. Şer û pevçûn 2 rojan devam kir û encama şer de 300 endamên DAİŞ'ê hatin kuştin, bi sedan jî birîndar bûn. Her wiha gelek ji endamên DAİŞ'ê jî bi saxî û brîndarî ketin destê Pêşmerge û yên din jî ber bi aliyê Mûsil û Tel Afer'ê ve reviyan. Bajêr bi temamî ket deste Pêşmergeyan. Di şer de 2 Pêşmerge jiyana xwe ji dest dan. Piştî azadkirina bajêr rê û malên Şengal'ê ji kemînêyên teqemeniyê tên paqijkirin. Di operasyonê de 28 gund û 2 bajarokên erebnîşîn jî ji DAİŞ'ê hat paqijkirin.

Serok'ê HRK'ê piştî rizgarkirina bajêr li serê Çiyayê Şengal'ê daxuyaniyekî da û got ''Me soz dabû û me tolhilda, keçen me yên Êzdî êdî dê serbilin bimeşin, kesên ku zulm li gelê Êzdî kiribin ew ê hisab bidin.''Li gorî agahiyan, demek dirêj bû ku DAİŞ'ê amadekariyên xwe kiribûn û gelek kemînên bombeyi, li xaniyan û maşineyan çêkiribûn lê bele dîsa jî xwe ji ber êrîşa kurdan negirtiye.

Piştî ku endamên DAİŞ'ê hatin îmhakirin û ji bajêr reviyan, hêzên pispor yên bêtesîrkirina mayin û teqemeniyê li ser rêyan û di nav xanî û kolanan kemînên veşartî digerin û îmha dikin. Nav bajarê Şengal'ê ji sedî 70 xerab bûye.

Hêzên kurd di havîna 2014'an jî li heremê operasyonekî mezin lidarxistibûn û li derdorê gelek rê, gund û hinek dever û beşek ji bajêr bidestxistibûn. Hingê niştecihên Şengal'ê yên ku li çiya asê mabûn jî hatibûn rizgarkirin.

Operasyona azadkirina Şengal'ê bi êrîşên hewayî yên koalîsyanê ya di pêşengiya DYA'yê de serê sibe ya roja Pencşema borî destpêkir. Paşê Pêşmerge bi top û roketavêjan sengerên DAİŞ'ê bombardıman kirin. Mabesta operasyonê navenda bajêr bû Pêşmergeyan serî de rêya navbera Mûsil û Rojava kontrol kirin. DAIŞ li bendê bu ku êrîş bi ser rêyên berbiçav bên kirin, lê Pêşmerge bi dozeran rêyên nû li çiya vekirin û ji 3 milan ve ketin bav bajêr û êrîş birin ser hedefên DAİŞ'ê. Hêzên DAİŞ'ê bi hember êrişa xedar ya Peşmerge nikarî berxwe bide û ji neçarî paş ve kişiyan. Piştî çend saetên bi şûn de hêzên Pêşmerge ketin nava bajêr û avahiya qeymekamî, febrîqeya çîmentoyê û hemû cihên stratejîk kontrol kirin. Hat zanîn ku gelek çekên giran, maşînên leşkeri û cebilxaneyê DAİŞ'ê ket deste Pêşmergeyan.

Li gor fermandarên Peşmerge beriya êrişê DAİŞ'ê gelek otomobîlên bombebarkirî amadekiribû û çendîn car hevla êrişên xwekujiyê dan lê bele piraniya van êrîşan ji aliyê Pêşmerge û hezên koalisyonê yên hewayî hatin şikestin.

**Rêyên heremê jî hatin kontrolkirin**

Di operasyonê de rêya navbera Şengal-Telafer, rêya Mûsil-Sûriye'yê û hemû rêyên herêmê ketine deste Pêşmergeyan. Rêya navbera Reqqa û Mûsil'ê li ser Şengal'ê ve tê girêdan.

Rêya 47 ya navbera Reqqa-Mûsil'ê jî ku niha ketiye jêr kontrola Pêşmergeyan ewlekariya xelkê Şengal'ê û heremê garantî dike. Li gorî pisporan piştî jidestdana vê rêyê cihê liv û tevgera DAİŞ'ê wê gelek teng bibe û wê ji neçarî rêyên çolê bikarbînin.

# i serbilindî bimeşin'

Kontrolkirina herêmê, rêyên ku DAIŞ ji bo hatûçûna navbera Reqqa, Mûsil û Şengal'ê jî qut dike, Mûsil-Tel Afer dikevin bin bandora Pêşmerge û DAIŞ ji niha û pê ve nikare bi hêsanî tevbigere. Pisporan balkişand li ser rewşa Sûriye'yê û Mûsil'ê. Pisporan dan zanîn ku ew ê ji niha pêve DAIŞ qasî berê nikare Mûsil'ê îdare bike. Her wiha pisporan diyar kirin ku Şengal li ser rêyên DAIŞ'ê yên stratejik Îraq û Sûriye'yê. Serkeftina Şengal'ê ji bo azadkirina Mûsil'ê gaveke stratejîke û dijî DAIŞ'ê ta niha operasyona herî mezin e.

Li aliyê din çavderên leşkerî û siyasî dibêjin serkeftin û azadkirina Şengal'ê ji bo kurdan ji serkeftinek leşkerî zêdetir tê wateya rûmeta kurdan.

**DYA'yê bi 40 êrîşên hewayî beşdarî operasyonê bû**

Wekî din ji beriya operasyona Pêşmergeyan DYA'yê û koalîsyonê ji bo alîkariya Pêşmergeyan mewziyên DAIŞ'ê bombebaran kirin. Musteşarê Karên Derve yê DYA Brett McGurk diyar kir ku hêzên Koalîsyonê 40 êrîş mewziyên DAIŞ'ê kiriye û li ser malpera xwe a teybet twitterê de peyamek şand û got "Şengal rizgar bû, dora Ramadi'yê ye."

**"Di operasyonê de tenê Pêşmerge heye"**

Serbazê Giştî yê Leşkerî yê HRK'ê Cemal Emînkî, ji derbarê operasyon û îdîayên ku PKK tevlî operasyonê bûye axivî û got ku ji bilî Pêşmerge û hêzên koalîsyonê tu hêz tevlî operasyonê nebûne.

Li gorî çavkaniyên PKK'ê, hêzên PKK'ê yên herêmê tevlî operasyonê bûne û wan Şengal'ê rizgar kirine. Beriya operasyona Şengal'ê di navbera PKK'ê û PDK'ê li ser koordinasyona operasyonê gengeşî derketibûn û HRK'ê biryar dabû ku ji bilî hêzên Pêşmerge tu hêz tevlî operasyonê nebin.

Berpirsê PDK'ê yê Karê Derve Hemin Hawramî jî anî ziman ku Şengal bi temamî ji aliyê hêzên Pêşmerge hatiye kontrolkirin. Hawrami,tevlêbûna PKK'ê û YPG'ê jî derewand. Hewramî got "Di operasyona Şengal'ê de ji bilî Pêşmerge û hêzên koalisyonê tu hêzên din tevlê nebûn. Eger PKK bi îdîaya xwe heq be, salek e li kuderê bû?" Hawrami wiha domand, "Ji xeynî Pêşmerge kî têra azadkirina Şengal'ê dike, tenê kare propagandayê dike. Tu rastiya van îddîayan nîn in." Hawramî diyar ku DYA'yê ji aliyê hewayî de piştgiriyê kiriye.

Çapemeniya nêzîkê PKK'ê jî di operasyona ku li ber kamerayan û di weşana zindî de pêk hat, behsê rola Pêşmerge nake û îddîa dike ku Şengal ji aliye hêzên wan ve hatiye rizgarkirin. Gengeşiyên navbera PDK'ê û PKK'ê sala 2014'an de wextê DAIŞ'ê Şengal dagirkir bi şûnde dest pêkirîne. PKK'ê wê demê li Şengal'ê bi cih bûye. PKK'ê ji wî wexti ve îdîa dike ku Pêşmerge hingê gelê êzdî di deste DAIŞ'ê de hiştiye. Çapemeniya PKK'ê ta niha jî dijberiya Peşmerge dike û dixwaze wan bê îtîbar bike.

Serbazên PDK'ê jî îddia dikin ku armanca PKK'ê ne rizgarkirina Şengal'ê ye, armanca wan destdanîna ser heremê û avakirina kantonekî ye

**PYD'ê banga îlankirina kantona Şengalê kir!**

Piştî azadkirina Şengal'ê jî PYD'ê daxuyaniyekî li ser rizgarbûna Şengal'ê da û bang li xelkê Şengal'ê kie ku xweser bin. PYD'ê diyar kir ku dereng rizgarkirina Şengal'ê sedema gengeşiyên siyasî bûye û her wiha bang li aliyên kurd kir ku Kongre'ya Netewî kom bibe.

**Demirtaş: Her tim hevgirtin**

Hevserokê HDP Selahattin Demirtaş jî piştî serkeftinê li ser Twitter'ê peyamek weşand û got, "Pêşmerge û Gerilla biheve re Şengal'ê ji DAIŞ'ê paqij dikin. Xwedê alîkarê wan be û hevgirtina wan berdewam be"

**Fermandariya Giştî ya Pêşmerge: 150 km di bin kontrola me deye**

Fermandariya Giştî ya Pêşmerge jî, li Şengal'ê qasî 300 endamên DAIŞ'ê kuştîne, 150 kîlometre xak bi destxisitne. Fermandariyê di daxuyaniya xwe de diyar kir ku "Serok Barzanî bi xwe serfermandar e û bi alîkariya koalîsyonê Şengal û derdora vê bi 3 aliyan de êrîşan dest pê kiriye û operasyon bi xetên giştî bidawî bûye û bajêr û derdora wê hatiye azadkirin. Fermandariya Giştî ya Pêşmergeyan rizgarbûna Şengal'ê li, Malbatên Şehîdan, xelkê Êzdi, gelê Kurdiatanê pîroz kir û diyar kir ku pêşveçûna Pêşmerge didome.

**Dr. Çürükkaya maşîna bombebarkirî îmhe kir**

Li gor detayên operasyonê di dema tevgera leşkeri de bûyerên balkêş jî qewimîn. Pêşmergeyê xwebexş Dr. Said Çürükkaya maşîneyeke ku 5 ton TNT barkirî dît û di heman deme de ew bêtesîrkir. Çürükkaya anî ziman ku eger di wext de ew nedîta, wê bi sedan Pêşmerge jiyana xwe ji dest bidaya. Çürükkaya, demek dirêj di nava hêzên PKK'ê de ma û niha jî wek Pêşmergeyekî li dijî DAIŞ'ê şer dike û perwerde ya leşkrî dide Pêşmergeyan.

**Şingal ji DAIŞ'ê paqij dibe**

Fermandarê endame berpirsyarê operasyonên Şengal'ê ku 1,5 sal ê ku di bin dagirkirina DAİŞ'e da ye û berpirsyarê buroya PDK'ê ya Mûsil'ê Seîd Memûzînî anî ziman ku tevahiya bajêr ji DAİŞ'ê hatiye rizgarkirin. Memûzînî got ku ; "Tevahiya Şengal'ê ket destê Pêşmerge. Li navenda bajar alên Kurdistan'ê hatin daleqandin û alên DAIŞ'ê hatin qetandin. DAİŞ aniha bi aliyê Tel Afer û Mûsil'ê ve direve. Di pevçûnên dijwar de bi sedan endamên DAIŞ'ê hatin kuştin. Di operasyonan de 1 Pêşmerge di qezaya erebê de jiyana xwe ji dest da."

**Kuştî û birîndarê xwe direvînin Mûsil'ê**

Di operasyonên ku li Şengal'ê hat kirin du rojan berdewam kir, hat gotin k, herî kêm 300 endamên DAIŞ'ê hatine kuştinê 300 kesî zêdetir jî birîndarên wan henê û di operasyonan de ji 150 zêdetir cenazeyên DAIŞ'ê şandinê Mûsil'ê. Hatiye tespîtkirin ku nêzî 300 brîndar jî li bajar rakirinê nexweşxaneyan. Berpirsyarê PDK'ê ya Mûsilê Îsmet Receb ji BasNûçe'yê re got ku roja înê 126 cenazeyên endamên DAIŞ'ê gihîştiyê adlî tipa Mûsilê. Hat zanin ku



DAIŞ ji bona tedawiya birîndarê xwe nexweşxaneya ji sivîlan vala dike.

Di hêla din de navenda Antî Teror a ku girêdayiya Ajansa Ewlehiyê ya HRK'yê da zanîn ku di operasyonên Şengal'ê de 5 emîrê DAIŞ'ê hatine kuştin. Di daxuyaniya ajansê de, ji nav 100 endamên DAIŞ'ê ku hatine kuştin de 5 kes ji wan emîrê DAIŞ'ê ne. Antî Terorê di daxuyaniya xwe de nave 5 kesên ku emîrê daîşe ne nave wan wisa ragihand; Ebu Kitade El Şiri, Ebu Cihad Elladari, Ebu Ömer Telaferi, Ebu Ibide, Ebu Enes.

**Qasim Şeşo: Dive Şengal bibe parêzgeh**

Fermandarê hêzen Pêşmergeyên Şengal'ê Qasim Şeşo piştî bidawîbûna operasyonê ji BasNûçe'yê re got ku Şengal bi saya Serok Barzanî hat rizgarkirin. Qasim Şeşo, "Em mizgînê didin tevahiya Kurdistan'ê, me bi saya Serok Barzanî û Pêşmergeyên qehreman Şengal ji destê DAIŞ'ê rizgar kir. 74 caran xwestin ku me tune bikin lê bi serneketin. Di bin ve alê de em ê tev hebin. Heta ku serokekî wek Mesud Barzanî serokê me be tu car kes nikarê me têk bibe" û got,em dixwazin ku Şengal bibe parêzgeh û ez bawer dikim ku Şengal ji demê berê çêtir bibe."

**Pêşmergeyên jin yên Rojava jî di operasyona da ne**

Di operasyona rizgarkirina Şengal'ê de Pêşmergeyên jin yên Rojava jî cîh girtin. Fermandara yekîneya Pêşmergeyên jin ku tevlî operasyonê bûn ji BasNûçe'yê got ku "Me bi coşekî mezin dest bi operasyonê kir. Em wek Pêşmergeyên Rojava pir dilşad bûn ku tevlî rizgarkirina Şengal'ê bûn. Em wek hêzên netewî tevlî operasyonê bûn. Armanca me serkeftin e, tû zor û zehmetî nikare me bitirsîne û serkeftina Şengal'ê serkeftina me ye." Pêşmergeyên jin yekîneyên Pêşmergeyên Rojê ne û ew jî bi ser ENKS'ê ve ne."

**Li Şengalê ala 60 metre**

Dîmenek balkêş ya operasyona Şengal'ê jî daleqandina aleyeke 60 metre bû. Ala ku li ser sîloya genim ya bajêr hat vedan bû cîhê kelecanek mezin. Hêzen Pêşmerge, piştî rizgarkirina bajêr ala herî mezin ya Kurdistan'ê li ser avahiya herî mezin ya Şengal'ê daleqandin. Ala ku 60 metre dirêj bûi li ser embara genim hat daleqandin.Dema bi berdana çekên serkeftinê de ala Kurdistan'ê li ser embarê hat daleqandin demên hêstewar pêkhatin. Fermandarê hêzên Pêşmerge Serpêl Serwan Herkî got; "Ala ku min ji bo Kongre ya Netewî ya Kurdistan'ê bo cenabê Serok Barzanî amade kiribû, me li Şengal'ê daleqand." Herkî got; "ala ku îro li Şengal'ê li esmana ye ez pir dilşad kirim."

# Li Xurmatû Heşdî Şabî êrişê kurdan dike



Li hêla din de operasyonên ku li dijî DAIŞ'ê berdewam dikin de li navçeya Tûzhûrmatû'ya Kerkukê di navbera hêzên Pêşmerge û mîlîsên Heşdî Şabî de pevçûnên derketin Rageşî berdewam dike. Di pêncşema ku derbas bûyî de li Tûzhûrmatû'yê komek milişeyên Heşdî Şabî li cihê kontrolê ku nesekinî bû pevçûn derketibû û 6 mîlîs hatibûn kuştin û Pêşmergeyekî û 2 welatiyên sivîl jiyana xwe ji dest dabûn. Roja Şemiyê jî li Quştepe milîsên Şîa, ofîsên YNK û PDK yên bajêr sotandin û li ser vê yekê di navbera wan û Peşmerge de şer derket. Piştî vê bûyerê gelek milîşiayên Heşdî Şabî ji derve hatin Xurmatû û êriş birin ser mal û dikkanên kurdan. Li ser pevçûnên bajêr yekîneyên Dij-Teror yê Kurdistan'ê ji berê xwe dan Xurmatû. Piştî hadiseyan Yekîneyên Hêza Dîcle ya Artêşa Îraq'ê jî berê xwe da Xûrmatû, lê Peşmerge li herema Silêman Beg rêya leşkerên Îraq'ê girt.

Komên Şîa ku ji Serokwezîrê kevn Nûrî Malîkî ve girêdayî ne, li Kerkûk û navçeyên wê dixwazin serweriya xwe tekûz bikin.

Fermandarê Pêşmerge Şêx Cefer Şêx Mistefa derbarê êrîşên milîsên Şîe yên li navçeya Xûrmatû bi awayekî tund milîşiayan hişyar kir û got; ''Me naçar bikin emê wan jî weke dijmin bibînin. 'Heger ev êrîş berdewam bin emê bi awayek tund bersiva wan bidin."

**Şêx Cefer Şêx Mistefa got: ''Em bi ti awayî zext, zûlm û stemkariya ti aliyekê li ser gelê Kurd qebûl nakin."**

Serokwezîrê berê yê Îraq'ê Nurî Malîkî, pevçûna ku Tûzhûrmatû hat jiyan kirin hêzên Pêşmerge berpirs dît û di malpera xwe ya Facebookê de daxuyanî da û got;'' Em Pêşmerge hişyar dikin ku li Tûzhûrmatû'yê êrişa li gelê sivîl nekin. Em ji hêzên ewlehiyê û ji Heşdî Şabî dixwazin ku bila gel bi parêzin. Ji hikumetê ji dixwazin ku di demek kin de li heremê bila kontrolê bigre destê xwe û yên ku qanûnan bin pê dikin dive berpirsyariya xwe bînê cîh."

Li hêla din serokwezîrê Îraq'ê Haydar Îbadî ji li ser bûyera Xûrmatû, daxuyaniyek belavkir. Îbadî di daxuyaniya xwe de got ku hêzên ewlehiye bila evlehiya mal û canê gelê sivîl e Tûzhûrmatû bigrin. Îbadî got ku, min ji hêzên evlehî re talîmat dayê ku qanûnan bisepînîn.

Li ser sedemên pevçûnên di navbera Pêşmerge û mîlîsên Şîe yên Heşdî Şabî de derket holê serokê Şîe yên Îraq'ê Ayetûllah Sîstanî jî xemgîniya xwe anî ziman. Sîstanî anî ziman ku, di bûyerên wisa da pêwîst e ku ji her dû aliyan jî kes werin hişyar kirin.

Serokwezîr Barzanî:

# Serkeftina Şengal'ê pîroz be

Serokwezîrê Herema Kurdistan'ê Nêçîrvan Barzanî peyamek ji Pêşmergeyên ku Şengal ji DAIŞ'ê paqij kirin re weşand û wan pîroz kir. Ji ofîsa çapemeniya Serokwezîriyê daxuyaniyek nivîskî hat weşandin û Serokê Herema Kurdistan'ê Mesûd Barzanî jî sedema wê serkeftinê hat pîrozkirin.

Di peyama Serokwezîr de wiha hat gotin: " Em pir dilşad in, ew serkeftin li tevahiya Kurdistan'ê û ji cihanê pîroz be." Serokwezîr Barzanî ji bona alîkariya hêzên DYA û Koalîsyonê jî spasîya xwe anî ziman. Nêçîrvan Barzanî di peyama xwe de wiha got: "Operasyona rizgarkirina Şengal'ê bi taybet li gelê Şengal'ê û li birayê me yên êzdî pîroz be." Barzanî, rizgarkirina Şengal'ê ji bona kurdan û tevahiya xwedî wateyeke mezin û got; "DAIŞ, li Îraq û Suriye yê tawanên mezin kir, lê zilma herî mezin li Şengal'ê kir."

**Îbadî Barzanî pîroz kir**

Li aliyê din Serokwezîrê Îraq'ê Haydar Îbadî, piştî serkeftina Şengal'ê bi rêya telefonê Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî ji bona serkeftina Pêşmerge ya Şengal'ê pîroz kiriye. Ji daxuyaniya ku ji Serokatiya RHK'ê hat dayîn de, di axaftina Îbadî û Barzanî de, derbarê têkoşîna li dijî DAIŞ'ê li tevahiya Îraq'ê û hevkariya hêzên Pêşmerge û artêşa Îraq'ê hatiye axaftin. Îbadî, ji ber operasyona ku hêzên Pêşmerge destpêkirin û Şengal rizgar kirin de Barzanî jî pîroz kir. Barzanî jî di der heqe pêşveçûyina Pêşmerge ya Şengal'ê û bûyerên dawî yên qada şer de û di derbarê paşveçuyîna DAIŞ'ê agahî dane Îbadî.

**Sîstanî Pêşmerge pîroz kir**

Serokê Şîe'yên Îraq'ê yê ayînî Ayetûllah Alî Sîstanî jî, ji ber serkeftina Pêşmerge ya operasyona Şengal'ê peyamek pîrozbahiyê weşand.Nûnerê Sîstanî, Ahmed Safî , di xutbeya roja înê ya li bajarê Kerbela'yê de, li ser navê Sîstanêi rizgarkirina Pêşmerge ya Şengal'ê pîroz kir û got; "Eger hemû alî li gel hev bisekinin ew ê serkeftinên mezontir tomar bikin û bidest bixin."

# Li Şengal'ê çi bû?





Hêzên DAIŞ'ê di 3 Tebaxa 2014'an de ji Şengal'ê heta Hewlêr'ê bi enîyek fireh êrîşî Herêma Kurdistan'ê kirin. DAIŞ'ê Şengal a li ser sinorên Îraq-Sûriye-Kurdistan'ê kiribû hedef. Li herêmê tevî êzdiyan, eşîrê ereb û li Tel Afer'ê jî tirkmenên sunî dijîn, li nêzîkê herêmê asûrî jî dijîn.

Di êrîşa Şengal'ê de li herêmê, eşîrên ereb yên ku kirîvê êzdiyan jî bûn, gelek zirar dan kurdan. Eşîrên ereb beriya êrîşê ji êzdiyan re gotibûn 'ji herêmê dernekevin û em kefîl in ku wê DAIŞ zirarê nede can û malê we.'

Ji ber vî sozê kirîvên xwe yên ereb, êzdiyên ji çar bajarokên xwe derneketin. Ji navenda Şengal'ê û gundên din êzdî,bi êrîşên DAIŞ'ê re ji bo xwe biparêzin vekişiyan çiyê. Êzdiyên ku vekişiyan çiya û yên li navenda Şengal'ê mabûn bi hefteyan di şerd û mercen xerab de jiyan. Gelek ji wan di ser Rojava de derbasî kampên Dihok'ê bûn û li wir hatin bi cîh kirin.

Ji ber vekişandina çiyê û şerdên dijwarî yên li çiyê û nexweşiyan 280 kes jiyana xwe ji dest dan. Ji ber sedemên din jî di dema koçê de 890 kes birîndar-bibûn.

**Di dema êrîşên DAIŞ'ê ji Şengal'ê 400 hezar kes koçkirin û zêdtir jî ew kes êzdî bûn, yên din ji kurdên sunne bûn.**

5.838 êzdîyên ji gundên Koço, Xatimî, Til Kesaba Kevn, Şehwanî û Azimi bi Şêx Ehmed Caso ve girêdayî bûn. Ev gund 12 km li başûrê Şengal'ê ne. Dostê Şêx Ehmed Caso, Ebû Hemza yê ereb soz dabû êzdiyan ku wê DAIŞ êrîşê wan neke. Ebû Hemze piştî ku DAIŞ hatibû Musil'ê bûbû emîrê wan. Êzdiyan bawerî bi cîran û kirîvê xwe yên ereb anîn û koç nekirin ji aliyê DAIŞ'ê ve rehîn hatin girtin. DAIŞ'ê ji êzdiyên ku revandin, 1.280 kes qetilkirin ku termên wan di 12 goristanan de hatin dîtin.

**Êzdiyên ji DAIŞ'ê rizgarbûn**

2 hezar û 200 kesên ku hatibûn revandin ji destê DAIŞ'ê bi awayekî xelas bû. Tê zanîn ku 2 hezar û 562 kes hê jî di destê DAIŞ'ê deye lê kes nizani bê çend kes dijî.

300 mêr, 758 jin, 456 zarokên kîz û 473ê zarokên lawik ji destê DAIŞ'ê hatiye rizgarkirin. Ji van kesan hin jê bi revê hin jê pêngava Hikûmeta Kûrdistan'ê ku sere daye, guhertina dîl a kirine û hin jê jî di şer de ji detsê DAIŞ'ê rizgarbûne.

Ji dîl were rizgarkirin Hikûmeta Kûrdistan'ê komîte yek avakir û bil malbatê dîl an re jî di têkiliyê deye. Ji bo agahiya dîl a malbat serî li vê komîteyê dide. Ji aliyê komîteye alikariya pera tê kirin ku ji bo malbat sere bide û dîl ê xwe xelas bike. Bi piranî dîl bi sere ya ku didin DAIŞ'ê hatiye rizgarkirin.

Hefteya borî de operasyona ku Parastin ê li Hewîce pêk anîbû 69 kes ku wê îdam kiribana ji girtîgeha DAIŞ'ê hate rizgarkirin.

**Di destê DAIŞ'ê de 2 hezar û 562 dîlê kurd**

Ji 2 hezar û 562 kesên ku tê zanîn di destê DAIŞ'ê de ye tê fikirîn ku gelekê ji wan mirîne. Ji wan dîl a herî zêde jin in û li navendê DAIŞ'ê re hatine belavkirin.

**Gelo Pêşmergeyan êzdî tenê hiştin?**

Piştî ku DAÎŞ'iyan Mûsil'ê bi dest xist, heremên ku dihatin nîqaşkirin ket bin qontrola Kurdistanê. Parastina ew 4 gundên ku 12 kîlolemtre li Başûrê Şengal'ê ye û zêdetir lê ereb diman jî ne mumkunbû. Perwerdekarê Peşmergeyan Said Çürükkaya, îdeayên wekî 'Peşmergeyên ku piştî komkujiyê çûn heremê ji ber ku nekaribuye, ji heremê reviyaye û êzidiyan tenê hêştiye' derewand.

"Ji bo tedbîrên leşkerî ev xeteke stratejîke tenê dikaribu di nava Şengal ê debê amadekirin. Ev tiştên ku têne gotin weki uk dibêjin peşmerge reviya ne raste,di vir de trajediya ku van çar gundan jiyaye heye. Li dijî hemû tedbîran ne mumkun bû ew roj ev gund bêne parastin."

Çürükkaya destnîşankir ku sedema komkujiyê ji ye ber baweriya Şêxê êzidiyan Ehmed Ceso ya bi ereban re pêk hatiye. Çürükkaya diyar kur ku ji ber vê yekê jî xelkê gund ji gundan dernekeptine û rastî komkujiyê hatine û got: "DAÎŞ ji bo ku gundî bibin misliman wext dide wan. Gelek xelqê du gundên ku rewşê ferqdikin, ji gund direvin. Ji ber Ehmed Ceso xelk baweriya xwe bi Ebu Hamza anî. Ger ku ev bawerî çênabuna dê hemû gundî bireviyan. Ger ku gundî bireviyana ev mirin wisa zêde nedebun."

Çürükkaya destnîşan kir ku derfeta leşkeriyê ya ku wê demê gundiyan bi parêze tunebu. Çürükkaya got ev facîa ji ber ku gelê kurd bi ciranên xwe bibawerin pêk hatiye û wiha dom kir: "Peşmerge nizanibû ku êrişek wiha pêk bê. Ger ku li ser vê îhtimalê bisekiniyana jî herwiha dikaribu li navenda Şengal'ê xetta parastinê pêk bianîna. Ev gundên ku di nava Ereban de bûn û ji 12 kîlometre ji Şengal'ê dur bû, nikaribu biparêze. Peşmerge van çar gundan berneda. Ji ber ku şêxê wan baweriya xwe bi berpirsiyarê DAÎŞ'ê anî 4 hezar mirov ket destê DAÎŞ'ê. Ji ber ku Ehmed Caso baweriya xwe bi Ebu Qasim anî gundî jî tedbîrên xwe negirtin.

Di Berfenbara sala borî de hêzên kurd bi operasyonan rêya ku hatibû vekirin kiribû bin kontrola xwe û kesên ku li çiyayan mabûn, xilaskirin. Her wiha di wan operasyonan de Şengal'a ku dibênjin kevine jî hatibû rizgarkirin.

## Barzanî li Çiyayê Şengal'ê:

# Pêşmerge destan n



Piştî serkeftina Operasyona Azadkirina Şengal'ê, Serokê RHK'ê û Serfermandarê Peşmerge Mesûd Barzanî li ser Çiyayê Şengal'ê daxuyaniyeke çapemeniyê da û got: "Li Şengal'ê, bi xwîna Pêşmerge destanek hate nivîsîn. Me soza ku dabû xwişk û birayên xwe yên êzdi bi cih anî. Li vê derê, ji ser Çiyayê Şengal'ê ez mizgîniya rizgarkirina Şengal'ê didim xwişk û birayên êzdi û hemû gelê Kurdistan'ê. Me tola xwe stend." Barzanî anî ziman ku bi qehremaniya Pêşmerge wan ragihandiye ku hemû kurdistanî li pişta ezdiyan in û wan heyf û tola hemû kiryarên kirêt ên li dij ezdiyan stendiye û got: "Slav ji bo hemû şehîdan! Ew ji bo azadiyê şehîd ketin."

Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî, bi xêzên sor destnîşan kir ku bila êdî tu kes helnewest e ku li gelê kurd zilm bike, lewre herkesî dît ku kurd tola xwe hiltînin û xwîna xwe li erdê nahêlin. Barzanî kesên ji herêmê yên ku beşdarî DAIŞ'ê nebûne û jê re nebûne alîkar wek "brayên kurdan" wesf kir û dom kir: "Yên ku hevkariya DAIŞ'ê kirine jî çi pêwîst be ew ê bê kirin.

Heta niha tu hêzî hewleke wiha neda ber çavên xwe. Rizgarkirina Şengal'ê peyamek e." Barzanî, ragihand ku ji bilî Pêşmerge tu hêzeke din beşdarî operasyonê nebûye.

**"Pêşmerge bi lehengî tola êzdiyan stendiye"**

Barzanî vê peyamê da cemaeta êzdi, gelê kurd û Kurdistan'ê û cîhanê: "Şikir ji Xwedayê dilovan re ku di vê roja dîrokî de Pêşmergeyên qehreman destanek nivîsandin û me rûgeş kirin. Ez spasiya xwe pêşkêşî hemû qehremanan dikim. Ez ji Şengal'ê, mizgîniya rizgarkirina Şengal'ê didim şehîdên qehreman, gelê kurd û bi taybetî jî xwiş û brayên êzdi. Ev destana ku bi xwîna şehîdên qehreman hatiye nivîsîn bûye sembola nemiriya şehîdan. Ji bo Pêşmergeyên ku di vê tekoşînê de birîndar bûne jî şîfa dixwazim. Gelê kurd û Kurdistan ê qehreman. Me soz da û soza xwe bi cih anî. Bila brayên êzdi zanibin ku ew ne bi tenê ne û hemû gelê Kurdistan'ê li pişta wan e. Bila vê yekê baş bizanibin ku êzdi beşa resen a gelê Kurdistan'ê ne. Îro, bila her neferek êzdi bêminnet serbilind be û jî xwe bawer bike. Bila her keçek ezdi bi coş biqîre û bêje 'Ez keça kurd im û sembola şeref û berxwedanê me.' Bi vê destana mezin tola wan hatiye stendin. Pêşmerge bi merdane tola xwişk û brayên êzdi hilaniye. Ji ber ku îr me serbilind kirine ez spasdarê hemû Pêşmergeyen qehreman im. Ez şehîdên qehreman ên Kurdistan slav dikim ku ji bo tekoşîna azadiyê canên xwe gorî kirine. Bila ruhê wan şad be."

**Şengal dibe parêzgeh**

Serok Barzanî, ragihand ku ew ê ji Hikûmeta Navendî ya Iraqê daxwaz bikin ku Şengal bibe parêzgeh û wiha axivî: "Ji ser Çiyayê Şengal'ê ez bang li li civaka navneteweyî, Hikûmeta Bexdayê û Hikûmeta Herêma Kurdistan'ê dikim ku ji bo geşkirina Şengal'ê pêwîstiya hevkariyê heye."

Barzanî ragihand ku ger bersiveke erênî ji vê daxwaza wan re neyê dayîn, ew ê bi serê xwe hewl bidin ku Şengal'ê bikin parêzgeh. Barzanî her wiha ragihand ku navenda Şengal'ê û piraniya gundên derdora wê hatine rizgarkirin, li deverên çolistanê jî tu kes nemane û heta ku DAIŞ bi tevahî ji holê rabe, ew ê têbikoşin.

**"Pêşmerge bi serê xwe û bi ala neteweyî Şengal'ê rizgar kir**

Ji bo aliyên ku di derbarê operasyona rizgarkirina Şengal'ê de agahiyên şaş didin raya giştî jî Barzanî anî ziman ku Şengal tenê ji alî Pêşmerge ve û bi ala Kurdistan'ê hatiye rizgarkirin, ji bilî Pêşmerge tu hêzeke din beşdarî vê operasyonê nebûye, beriya ku Pêşmerge dest bi operasyonê bike tu kesî dest bi operasyonê nekiriye û ev jî piştrast dike ku Pêşmerge Şengal'ê rizgar kirî ye.

Barzanî da zanîn ku ew ê nehêlin ku ji bilî ala neteweyî tu aleke din li Şengal'ê bê bilindkirin.

Mesûd Barzanî di derbarê parastina Şengal'ê de jî axivî û got: "Ger ku careke din bajar an jî herêmeke Kurdistan'ê bê dagirkirin, wê ew dagirker bedêleke pir mezintir bidin. Bila ev destana Şengal'ê ji bo dijminên kurd bibe metirsî, da ku careke din hewleke wiha pêk neyînin û zilm û zorê li gelê kurd nekin."





# ivîsand, tol hate hilanîn!

"Bêguman wê destana rizgariya Şengal'ê, bandoreke pir mezin li siberoja gelê Kurdistan'ê bike. Ji bo gelê Kurdistan'ê rola van hêzan a li ser operasyonê bizanibe û di dirêjahiya dîrokê de wan bi bîr bîne, min xwest ez navên wan rêz bikim. Di dawiyê de ez slavên germ li giyanê pak ên şehîdên Kurdistan'ê dikim, ji xwedayê dilovan ji bo brîndarên me şîfayê û ji gelê Kurdistan'ê re siberojeke ronak niyaz dikim."





**"Wê Şengal rê li ber rizgarkirina Mûsil'ê veke"**

Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî, piştî axaftina xwe bersiv dan pirsên rojnamegeran. Barzanî anî ziman ku destana Şengal'ê helwesteke stratejîk e ku rê li ber rizgarkirina Mûsil'ê jî vekirî ye, bi alîkariya êrîşên asmanî ya hêzên hevpeyman û bi tekoşîna bejayî ya Pêşmerge Şengal hatiye rizgarkirin û êdî Mûsil jî dikare bi hêsanî bê rizgarkirin. Barzanî, da zanîn ku Şengal ji bo wan pir grîng e, çimku Şengal bûye sembola mazlûmiya gelê kurd û ji ber wê yekê jî rizgarkirina Şengal'ê xwedî wateyeke grîng e.

Mesûd Barzanî di derbarê parastina Şengal'ê de jî axivî û got: "Ger ku careke din bajar an jî herêmeke Kurdistan'ê bê dagirkirin, wê ew dagirker bedêleke pir mezintir bidin. Bila ev destana Şengal'ê ji bo dijminên kurd bibe metirsî, da ku careke din hewleke wiha pêk neyînin û zilm û zorê li gelê kurd nekin."

Barzanî diyar kir ku tekoşîna li dij DAIŞ'ê ne erka wan tenê ye û erka herkesî ye û dom kir: "Ji ber vê yekê divê herkes piştgirî bide vê tekoşînê û heta ku DAIŞ ji holê radibe ev tekoşîn bê navber bidome."

Barzanî ragihand ku ew ê tenê ala neteweyî ya Kurdistan'ê li Şengal'ê bê daleqandin û ji bo piştgirîdayîna hêzên hewayî spasiyên xwe pêşkêşî DYA û endamên hevpeymaniya wê kir û wiha dom kir: "Ji vê derê, ji ber alîkariya wan a êrîşên asmanî ya Amerîka û hêzên din ên hevpeymaniya navneteweyî ez spasiyên xwe pêşkêş wan dikim. Ji ber ku erka xwe ya ragihandina geşedanan bi serkeftî pêk anîne, ez spasiyên xwe pêşkêşî dezgeh û xebatkarên çapemeniya xwemalî û ya navneteweyî dikim."

**"Me dawî li azara kurdan anî"**

Serokê Herêma Kurdistan'ê Mesûd Barzanî di peyama xwe ya nivîskî ya di derbarê serkeftna Şengal'ê de jî diyar kir ku rojên ku dagirker zilm û zoriyê li ser gele Kurdistan'ê bimeşînin qediyane û êdî serdemeke nû destpê kirî ye. Barzanî di peyama xwe ku rizgarkirina Şengal'ê ya ji dest terorîstên DAIŞ'ê hem ji alî serbazî, hem ji alî siyasî û hem jî ji alî dîrokî ve ji bo gelê Kurdistan'ê serkeftineke pir mezin e û destnîşan kir ku ev serkeftin bi saya Pêşmerge pêk hatiye. Barzanî di peyama xwe de van axaftinan kir:

"Vê serkeftinê ji hemû aliyan re vê yekê da têgihîştin ku ew rojên ku dagirkerên zalim zilm û zoriyê li ser gelê Kurdistan'ê bimeşînin bi dawî bûne. Gelê Kurdistan'ê bi qehremaniyeke bala dagirkeran têk dibe û nirxên mirovahiyê diparêze. Piştî dagirtina Şengal'ê û tofana bi serê xwişk û brayên me yên êzdi ve hat, em amade bûn ku di roja rizgariyê de her rêbazê bikar bînin û her bedêlê bidin!

Di vê pêvajoya ku me li paş xwe hişt de dû caran li xwişk û brayên me yên êzdi zilm bû. Pêşî ji ber ku kurd bûn zilm li wan hate kirin û dûre jî ji ber ola wan zilm li wan hate kirin. Ez dixwazim ji xwişk û brayên xwe yên êzdi re vê yekê bêjim ku ew beşek resen a ji Kürdistanê ne û Pêşmerge bi can û xwîna xwe ew parastine. Kurdistan, welatê pêkvejiyan û bratiyê ye û wê ev çanda dewlemend her wisa bimîne. Rizgarkirina Şengal'ê serkeftineke ew çend mezine ku wê dîrok vê serkeftinê tu carî ji bîr neke. Ji vê derê, ji ber alîkariya wan a hêzên hewayî ez spasiyên xwe yên ji bo DYA û hêzên hevpeyman dûbare dikim. Ez spasiyên xwe pêşkêşî hemû Pêşmerge û fermandarên Pêşmerge dikim. Ji ber ku bi giyaneke polayî beşdarî rizgarkirina Şengal'ê bûne ez spasiyên xwe pêşkêşî Hêzên Zêrevanî yên Pêşmerge, Yekîneyên Pêşmergeyên Roj ên Rojavayî, Fermandariya Şengal'ê, Fermandariya Hêza Piştgiriya Yekem a Duhokê, Fermandariya Barzani, Hêzên Taybet ên Yekem û Hêzên Taybet ên Dûyem, Hêzên Gulan, Tîma Dijî Terorê, Hêza 32., Hêza Sirûşt a Duhokê, Tûgayên grêdayî Wezareta Pêşmerge, Tûgayên 4, 8 û 12 û Hêzên Xwebexş dikim.

Ji ber ku di rêvebirina operasyonê de roleke sereke leyîstin, îstixbaratên baş berhev kirin, plansaziya rizgarkirina Şengal'ê kirin û bi hêzên hevpeyman re koordînasyoneke serkeftî pêk anîn, ez spasiyên xwe pêşkêşî Encûmena Asayîşa Giştî ya Herêma Kurdistan'ê jî dikim.

Bêguman wê destana rizgariya Şengal'ê, bandoreke pir mezin li siberoja gelê Kurdistan'ê bike. Ji bo gelê Kurdistan'ê rola van hêzan a li ser operasyonê bizanibe û di dirêjahiya dîrokê de wan bi bîr bîne, min xwest ez navên wan rêz bikim. Di dawiyê de ez slavên germ li giyanê pak ên şehîdên Kurdistan'ê dikim, ji xwedayê dilovan ji bo brîndarên me şîfayê û ji gelê Kurdistan'ê re siberojeke ronak niyaz dikim."




## Prof. Dr. İlhan Kızılhan:

# Divê Şengal bi

**Akademisyenê êzdî Prof. Dr. İlhan Kızılhan li ser rizgarbûna Şengal'ê, niqaşên statûya Şengal'ê, derûniya xelkê Şengal'ê rawestiya û ji BasNûçe'yê re axivî. Kızılhan da zanîn ku divê komelgeha kurd karesata li ser Şengal'ê ji bîr neke û wê weke sembol qebûl bike. Her wiha Kızılhan bal kişand ser pêywendiyên xelkê sunne û êzdî jî û da zanîn ku divê komîsyonek bê avakirin ku karibe dîsa bawerî di navbera pêkhateyan de pêk bîne.**

Siwar Bedirxan

DAIŞ beriya niha bi saleke êrîşî ser Şengal'ê kir û gelek jin û zarokên êzdî dîl girt û her wiha bû sedeme koçberbûna bi hezaran xelkê êzdî. Hêzên Pêşmerge piştî dagira DAIŞ'ê ya li herêmê gelek operasyon pêk anîn. Herî dawîn roja Pêncşema borî hêzên Pêşmerge bi serfermandariya Serokê Herêma Kurdistan'ê Mesûd Barzanî ji bo azadkirina Şengal'ê operasyoneke mezin da destpêkirin û bajêr rizgar kir. Operasyona di 12'ê mehê de dest pê kir di 13'ê mehê de bi dawî bû zêdetir ji 300 endamên DAIŞ'ê hatin kuştin û Şengal hat azadkirin. Beşek mezin ji bajêr rûxuya ye û xelkê bajêr li kampan penaber bûne. Piştî rizgarbûna Şengal' ê niha tê çavarêkirin ku bajar ji nûh ve bê avakirin û birînên xelkê êzdî bêne peçan.

Serokê HRK'ê Mesûd Barzanî yê giringî bi rizgariya Şengal'ê dida niha jî di nava hewldana deye ku Şengal'ê bi Herêma Kurdistan'ê ve girêbide û wek parêzgeh îlan bike.

Akademisyenê êzdî Prof. Dr. İlhan Kızılhan li ser rizgarbûna Şengal'ê, niqaşên statûya Şengal'ê, derûniya xelkê Şengal'ê rawestiya û ji BasNûçe'yê re axivî. Kızılhan da zanîn ku divê komelgeha kurd karesata li ser Şengal'ê ji bîr neke û wê weke sembol qebûl bike. Her wiha Kızılhan bal kişand ser pêywendiyên xelkê sunne û êzdî jî û da zanîn ku divê komîsyonek bê avakirin ku karibe dîsa bawerî di navbera pêkhateyan de pêk bîne.

**Şengal û xelkê êzdî gelek jenosîd û komkujî dîtine. Herî dawî Şengal hat rizgarkirin. Piştî rizgarbûna Şengal'ê divê çi bê kirin?**

Salekî zêdeye ev kareset hatiye serê gelê kurd, teybet serê gelê me yê êzdiyan û her wiha serê mesîhiyan, şebekan, kakaiyan. Teybet şikestinekî mezin di navbera êzdiyan yan de çêbû ku baweriyan wan şikestiye, lê dîsa îhtimal heye ku baweriya wan çêbibe. Dibe aliyek pir eşkere bê gotin ku Şengal girêdayê Kurdistan'ê ye. Hinek teybetiyên cûda yên xelkê Şengal'ê hene û dibe Herêma Kurdistan'ê van teybetiyan awayekî eşkere bi makazagonê de biparêze û li wan xwedî derkeve. Teybetiyên dîrokî ne, 800 sal dîroka wan heye, dibe ev teybetiyên wan bêne qebûlkirin. Eger Herêma Kurdistan'ê van tiştane bike ez bawerim dê êzdî vegerin welatê xwe. Welatê vala tu wate nîn e. Êzdiyên di Şengal'ê de nebin tu wateya vê nine. Dibe ku di pêşerojê de êzdî vegerin û çanda xwe kultura xwe bijîn. Dibe hinek senaryoyên nû derkevin. Yek, dive Şengal ji İraq'ê kut bibe û vegere ser Kurdistan'ê, dive Şengal bibe vîlayeteke nû û dive aliyekî demokratîk bijîn û wek Dihok'ê, wek Silêmani'yê, wek Kerkuk'ê waliyên xwe hilbijêre. Dive Şengal hizbên xwe

Salekî zêdeye ev kareset hatiye serê gelê kurd, teybet serê gelê me yê êzdiyan û her wiha serê mesîhiyan, şebekan, kakaiyan. Teybet şikestinekî mezin di navbera êzdiyan yan de çêbû ku baweriyan wan şikestiye, lê dîsa îhtimal heye ku baweriya wan çêbibe. Dibe aliyek pir eşkere bê gotin ku Şengal girêdayê Kurdistan'ê ye.

avabike rêxistinên xwe avabikin û dive milletê kurd jî vê qebul bike. Ya duyemîn navdewletê, dewletên Yek Girtî jî ji bo Şengal'ê alikarî bikin, sembolên komkujiyê avabikin. Ez ne bawerim ku tenê serê xwe Herêma Kurdistan'ê vêderê biparêze û vegerîne ser xaka Kurdistan'ê. Eger dewletên navdewletî vê derê wek cihekî teybet bibînin û demekê aliyê leşkerên navdewletî û Pêşmerge bê parastin Şengal vegere, encex vê şiklê Şengal bêparastin û bê vegerandin.

**Çi bi ser xelkê Şengal'ê de hat, kîjan nexweşiyên nefsî bi wan re peydabûne? Rewanşinasiya wan çawa ye?**

Em nexweşiyên derûnî dibinin tewahiya wan keç û jin in û gelek destdirêjî li wan hatiyekirin. Her wiha gelek travma çêbûne, Divê ev mejiyê wan ji bîra wan bê derxistin. Lê ne mimkûne. Kabûsên giran dibînin, nexweşiyên wan yên bedenî derketine, yên derûnî derketine. Divê di serî de ewlekarî hebe ku ev tirs û xof ji dilê wan de derkeve. Hewceye ku her mirovek wê derûniyê fêmbike û alikariya wan bike. Pêwistî bi psiklogan heye lê ev qas kesê pispor li Kurdistan'ê nînin. Li Almanya'yê me 1000 kesan tedawî kiriye. Du sal in ewqas hatin tedawîkirin ev yek li Kurdistan'ê ne mimkûn e.

**Em dizanin ku tirkmen û erebên dorubera Şengal'ê yekem êrîş biribûn ser xelkê êzdî gelo piştî wê ezmûnê ew ê xelkê êzdî dîsa vegerin û li gel wan pêkhateyan bijîn?**

Li gor dîtina min hemû kesên tewanbar, taybetî DAIŞ li saleke di Kurdistan'ê deye. 1300 jinên êzdî ketîne destê DAIŞ'ê, min wek bijîşk ew keç û jin derman kirine. Ez rewşa wan dibinim. Divê ku kesê ji bo wan bûne alîkar bên tawanbar kirin, zêdetir gundiyên ereb û tirkmen bûne alikarê DAIŞ'ê û tu baweriya êzdiyan ji wan nemaye. Êzdî vê yêkê bi awayekî eşkere tînin ziman û hez nakin vegerin ji ber ku baweriya êzdiyan nemaye. Gelek gundên ereban li aliyê kurda ne. Di operasyona Şengal'ê de çend gund hatin rizgarkirin lê belê xelk naxwazin vegerin. Baweriya wan bi herêmê nema tê. Lê dive ne bi rojane ne bi demkî, divê mirov dirêjî pêşerojê bifikire. Divê cîran bên cem hev, baweriya xwe nû ve teze bikin. Lê şert û mercên baweriyî jî hene. Ji bo baweriyê dibe ku kesên alikariya DAIŞ'ê kirin, kesên destdirêjî ji jinan kirine, kesên insan kuştine, kesên danûstandina DAIŞ'ê kirine, divê hemû bên eşkerekirin û hemû derkevin ber dadgehê û bên tewanbarkirin. Wextê ev tiştine hatin kirin, ihtimalek heye ku dîsa bawerî çêbibe, lê eger ev tişt neyên kirin heta dawiyê jî bawerî çênabe û ew ê venegerin.

**Piştî her komkujiyê bîrdarî tên avakirin. Cenabê te ji ber ku li Almanya'yê vê yekê baştir jî dizane. Kurd dikarin ji bo komkujiyên li ser xelkên êzdî çi bikin? Ew ê çi tesîra bîrdariyan li mejiyê kurdan li dîroka kurdan çê bibe?**

Em kurd li ser dîroka xwe nesekinin, wextê em dîroka xwe ji bîrbikin, em ê pêşeroja xwe wenda bikin. Ji ber ku dîrok hema tê wateya pêşerojê. Netew bi dîrokê pêşeroja xwe dibinin. Eger em dîroka xwe ji bîr bikin em nikarın gavekê pêşve biçin. Heta niha jî em wek gelê kurd xwedî dîroka xwe derneketin e. Lê dîsa jî çawa Helebçe ji bo her kurdekî semboleke jenosîdê ye, divê Şengal jî bibe sembola jenosîdê. Divê hemû pirtûk, hemû zanîngeh, hemû dibistan bi giranî bala xwe bidin li ser dîrokê û dibe Jenosîda Şengal.ê her gav mijara sereke ya dîroka Kurdistan'ê be. Divê bi awayekî fermî jî jenosîd bê naskirin., hemû hêzên Kurdistan'ê, hemû komeleyên Kurdistan'ê vê jenosîdê di bîra xwe de bigirin.weke ku me got dîrok peşerok û siberoja netewa ye.

**Ez dixwazim bêm ser rikberiya li ser Şengal'ê jî gelo çima Şengal bû cihê rikberiya partiyên siyasî yên Kurdistan'ê?**

Berjenvendiyên netewî yê Kurdistan'ê mixabin ji hîn jî di binê berjewendiyên rêxistinan dene. Her hizib berjewendiyên xwe yên hizbî, yên îdeolojîk li ser berjewendiyên Kurdistan'ê de dibin e. Çiqasî gengeşiyên xwe de bahsa kurd û Kurdistan'ê dikin jî rêxistinek ji bo xizmeta gelê kurd pêk nayê. Kesê neteweya xwe hez bike, divê îdeolojî, tiştên hizbî ne de jiyan. Lê em hêzên kurdî mêze dikin tiştek wiha li ba wan nîn e. Niha şenseke gelekî mezin di deste me kurdan de heye. Divê ku em vî şensî nekin kurbaniya gengeşiyên xwe yên hizbî. Ez ne bawerim ku em carek din şanseke wiha yê dîrokî bibînin. Divê berjevendiyên xwe yên hizbî hinek piştgûh bikin, tenê berjewendiyen netewî bifikrin. Divê ev rojene baş bênê

# ibe sembola jenosîdê





analî kirin. Cara yekem e ku beşek ji kurdên Başurê Kurdistan'ê dê demek nêzde serxwebûna xwe ragihinin û hemû devlet dê vê yekê qebûl bikin. Şengal ji wiha ye. Ew ê Şengal jî bibe parçeyekî Kurdistan'ê. Divê stratejiyên kurdan li ser xeta welatparêzî nêzîkê van meseleyan bibin.

**Di warê siyasî de divê ji bo Şengal'ê çi bê kirin? Ew ê çi di berjewendiya xelkê êzdî debe?**

Bi rastî we pirsek gelekî pêwîst kir. Niha Şengal aliyê hêzên kurdî hatiye rizgarkirin, em gelek keyşfxwein. Lê belê aliyek li aliyekî din em gelek jî xemgînin ku derbarê nûçeyan de em dibînin her hêzek tenê xwe dibîne, dibêje me Şengal rizgarkiriye, her hêz xwe serkeftî dibine. Li gor dîtîna min ji bo pêşerojê muxatabê Şengal'ê, yêk Bexda ye yêk jî xelkê êzdî ye. Ne PDK'ye ne PKK'ye ne YNK'ye ne jî hizbeke din e. Hikumeta Kurdistan'ê divê ji bo her aliyên siyasî her hewlbide Şengal bigeheje Kurdistan'ê û venegerine. Hikumeta Kurdistan'ê dibe şanaziyê nişanî êzdiyan bide da ku êzdî vegerin. Jı bo vê jî projeyek siyasî pêwîst e. Hewce ye ku Şengal bibe herêmeke Kurdistan'ê. Divê ne tenê ji aliyê olî ve bê dîtin, hewceye ku êzdatî weke çandek serbixwe û dîrokî bê dîtin, ji ber ku êzdatî çandeke 800 sali ye û nava civaka Kurdistan'ê xwe dane

> Berjenvendiyên netewî yê Kurdistan'ê mixabin ji hîn jî di binê berjewendiyên rêxistinan dene. Her hizib berjewendiyên xwe yên hizbî, yên îdeolojîk li ser berjewendiyên Kurdistan'ê de dibin e. Çiqasî gengeşiyên xwe de bahsa kurd û Kurdistan'ê dikin jî rêxistinek ji bo xizmeta gelê kurd pêk nayê. Kesê neteweya xwe hez bike, divê îdeolojî, tiştên hizbî ne de jiyan. Lê em hêzên kurdî mêze dikin tiştek wiha li ba wan nîn e.

qebûlkirin û dibe kurd berjewendiyên êzdiyan biparêzin. Di wî warî de gelek xemgînim, hizbên kurdan li ser miletê Şengal'ê listokên siyasî dikin, nakokiyan dixin navbera kurdan, kurdan ji hev qut dikin. Li ser êzdiyan de cudabûnên nû dixin nava kurdan. Mixabin em nikarin aramiyê bidin gelê xwe yê Şengal'ê.

**Siyaseta Serokê Herêma Kurdistan'ê Mesud Barzanî ya Şengalî ew ê şaştiyên demên borî û vekişîna Pêşmergeyan telafî bike gelo? Rola Barzanî ya ji bo Şengal'ê divê çawa bê şîrovekirin?**

Muşkuleyek heye ku siyasete Mesûd Barzanî belkî gelek xwe ji aliyê dildarî ve nêzîkê êzdiyan bike lê mixabin her tişt jî li gorî mirovan çênabe. Lê vekişana 3'yê Tebaxa 2014'an şikestinek mezin nava êzdiyan de çêkir. Disa ev êzdiyên beriya 800 sale din bin desthilatdariya îslamê de bûn baweriya van disa hate şikestin. Pêwist e Mesûd Barzanî xwe nêzikî wan bike ku êzdî vegerin. Navbera êzdiyan de jî nakokî hene, divê êzdî jî xwe nû bikin. Da ku wenda nebin, mezin bibin, nêzîkî Kurdistan'ê bibin. Divê Herêma Kurdistan'ê jî nêzîktir be ji êzdiyan lê pirsgirek û gengeşyên wan jî hene, yên êzdiyan bi xwe jî hene. Divê herkes xwe nû bike û li gorî şert û mercên demkî û dîrokî tevbigere.

**Ew ê dilê xelkê me yê êzdî çawa dîsa li xelkê me yê Sunne vebe? Rizgarbûna Şengalê ew ê tesîrekê li ser peywendiyên wan bike gelo? Her wiha gelek xelkê êzdî niha li kampên penabera ne. Gelek kes ji wan çûn Ewrûpa'yê piştî rizgarbûna Şangal'ê ew ê xelkê me yê êzdî vegerin Şengal'ê?**

Hinek kurdên Sunnî hevgiriya DAIŞ'ê dikin. Gelek kes ji Dihok, Zaxo alikariya wan dikirin. Ji wan re xwarin rê dikirin. Divê gelê Sunne beje; 'Pirsa me û we nîne, em çanda we ola we qebûl dikin'divê êzdatî fermi bêqebûl kirin. Eger ev yek çêbibe dê dilê wan aş bibe. Rastî gava ew kerasat herêma Şengal'ê çêbû li Dihok'ê xelkê me ji halê xwe gelekî razîbun. Niha bûne penaber û ji halê xwe gelekî nerazîne, Her tiştê wan kêmê. Di serî de ziman, çand, aborî, her tişt kêmase û pisrgireke. Eger ewlehî aram bibe ê bi vegerin. Eger ev tirs di dîlê wan de derkeve dê vegerin lê tirs dilê her kesê deheye

**Pêşniyarên te çi ne kurd çawa dikarin wan birînên xelkê me yê êzdî bipêçin û rê li ber jenosîda wan bigrin? Demildest divê çi bê kirin?**

Çanda me gelek rengin e, kakayî, şebek, êzdî, misliman her wiha gelek ol û çand bi hev re û divê hemû çand bi navê xwe bijîn. Her çand divê li gori teybetmendiyên xwe bê parastin. Bi teybetî pêwistiya Şengal'ê bi statûyeke nû heye. Divê ev teybetî bê parastin. Ev jî aliyê Kurdistan'ê bê kirin. Demildest divê gavek bê avatin. Komisyoneke hewpari çêbibe ku disa baweri çêbibe din ava pêkhateyan de. Divê siyasetvan û herkes wan bi parêze, bawerî disa bi wan re çêbibe da ku biratiya me mezin bibe.

# Peytexta êzdatiyê LALEŞ

Welat Baz

Warê şêxan, peytexta êzdiyan, pîrozgeha Dasinyan bajarê Şêxan e yek ji qezayên Dihokê ye.

Şêxan di nav paralelên 36 û 38ên Bakûr û merîdyenê 45 û 23ê Rojhilat de cîh digre. Bajêr ji bakûr ve cîranê Dihokê û ji başûr ve jî cîranê Mûsilê ye. Şêniya nişteciyên Bajarê Şêxan ji 50 hezarî zêdetir e.

Bêtirên niştecihan bajêr bawermendên Ola êzdatiyê ne. Herêma Şêxan cî û bingeha peydabûna Ezîdiya ye û di dîroka bawermendên vê olê de rolekî xuyayî û bilind lîstiye.

Beşek ji niştecihên bajêr jî kurdên Musluman in.

Şêxanî bi zarava kurmancî bi devoka bahdînî diaxifin.

Şêxan ku her nawenda mîrgeha êzdiyan bûye, dîroka wê heta sala 1236an dirêj dibe. Heta sedsala 12an navê mîrnîşina ezdiyan, Mîrgeha Dasinyan bûye.

Paytexta vê mîrnîşiniyê di demên pêşîn de Dihok bûye ku hingê wek 'Dihoka Dasinya' hatiye binavkirin. Pi?ştî hilweş?în û kavlîbûna Mîrnîşina Dasiniyan, Mîrgeha Şêxan peyda bûye. Paytexta wê gundê li Baadrê bûye.

Sînorên Mîrgeha Şêxan, ji çemê Zêya Mezin û heta Çemê Xabûr û devera Surçiya û ji wir jî dihîşt heta Herîr û Welatê Şêxan ya niha û çiyayê Meqlûb û devera Silêvaniyê û heta Çemê Diclê yanî Ava Mezin û bajarê Dihokê.

Mîrgeha Şêxanê rolekî berbiçav û karîger di serpêhatî û jiyana siyasî û dînî ya devera dorûber de leyistiye.

Îro li Şêxanê civaka êzdî jiyaneke otonom dijî. Di karên olî û îdarî de Şêxan ji alî êzdiyan ve tê birevebirin. Ji bo pêşxistina çand û olê gelek sazî hatine damezrandin. Yek ji van saziyan Bingeha Laleşê ye. Cîgirê Serokê Koma Rewşînbîrî Qadir Selîm Şemo di derbarê damezrandina vê saziyê de van agahiyan dide.

Bingeha Laleş li ser xaka êzdîxanê de gelek şaxan jî vekiriye û çendîn rojname û gowar, kûrsên fêrbûna ziman û xwendin û nivîsandinê jî têde gelek çalakiyan dike.

Sînorên Mîrgeha Şêxan, ji çemê Zêya Mezin û heta Çemê Xabûr û devera Surçiya û ji wir jî dihîşt heta Herîr û Welatê Şêxan ya niha û çiyayê Meqlûb û devera Silêvaniyê û heta Çemê Diclê yanî Ava Mezin û bajarê Dihokê.
Mîrgeha Şêxanê rolekî berbiçav û karîger di serpêhatî û jiyana siyasî û dînî ya devera dorûber de leyistiye.
Bingeha Laleş li ser xaka êzdîxanê de gelek şaxan jî vekiriye û çendîn rojname û gowar, kûrsên fêrbûna ziman û xwendin û nivîsandinê jî têde gelek çalakiyan dike.



### Şêx Adî û Êzdatî

Şêx Adî û birazyê wî Şêx Hesen ku ji rêvebirên mîrnîşina Şêxanê bûne, nav û dengekî mezin li Kurdistanê dane. Şêx Adî di navbera salên 1073an û 1078an li Lubnanê hatiye dinê. Bapîrên wî ji Kurdên Hekkarê ne. Ew di sala 1111an de li Laleşê bi cîh bûye. Di demên pêşîn de wek mutewasifekî Musluman e. Şêx Adî wek Şêxulam, yanê 'şêxê hemû milletan' dihat qebulkirin.

Biraziyê wî, Şêx Hesen wek zana û fîlozofekî bijarte dihat nasîn ku xwediyê Kitêba Cîlwe û çendîn kitêb û nivîsarên din e. Şêx Hesen nav û dengekî mezin peyda kiribû û xelkekî zor lê derdora xwe kom kiribû. Mîrgeha wî esasê dewletekî bû. Li gor hin nivîsarên; 'Ger doza Şêx Hesen serketiba, wê nexşeya Îslamê jî gûharîba.'

Ji ber wê tirsê Waliyê Mûsilê Bedredîn Lûlû ji tirsa vê yekê êriş kir ser Mîrgeha Şêxan; Di sala 1246an de, di encama şerên xwînî de Şêx Hesen tê girtin û li zindana Musilê tê xeniqandin. Di êrişa duyêm de, Bedredîn Lûlû di sala 1254an de digîje Laleşê û gora Şêx Adî disotînê. Herwiha Mîrnîşînên Kurdên Musluman û Împaratorên Osmanî jî gelek car êrişê ser Mîrgeha Şêxan kirine.

### Rabirdûya xwînî ya êzdiyan

Di çerxa şanzdehan de Mîrgeha Şêxan dikeve bin destê Mîr Hesen. Mîr Hesen ku di sala 1520an de nêzî Osmaniyan dibe, wek waliyê bajêrê Musilê tê tayînkirin û kûrê wî Hisên Begê dibe hakimê bajêr. Mîr Hesen Beg di sala 1534an de diçe ser dilovaniya xwe. Piştî serdemê Şêx Hesen kûrê Şêx Adî yê dûyêm û Mîr Şêx Şerefdîn tê.

Mîrê herî bi navûdeng ku navê wî di çawkaniyên dîrokî de hatiye ziman, Hisên Beg e. Dema Siltan Silêmanê Qanûnî ji Tebrîzê vedigere û êzdîn Şêrê Mîrê Mîrgeha Hewlêrê dixeniqîne, ji dêlve wî ve Mîr Hisên Beg wek Mîrê Hewlêr, Soran, Musil û hemû Bahdinanê tayîn dike. Di vê serdemê de nav û dengê Êzidiyan û dewra wan li Şêxan, Mûsil, Hewlêr, Soran û hemû Behdînan bilind dibe.

Ji sala 1520an heta 1566an Mîrgeha Heleb û Şingalê jî di bin destê Mîr êzdîn kûrê Yusif Kurdî de bu. Ev Mîr, ji binemala Mîr Şerfedîn ji mala Şêx Hesenê Adanî bu.

Bi xurtbûna Mîrnîşina êzdiyan, Dewleta Osmanî ket gumanan û mîrên Musluman li dijî wan xist tevgerê. Piştî vê yekê mîr û serekeşîrên heremê yên Musluman li dijî Mîrê êzdî bûn yek û êrişê ser Hewlerê kirin. Di encama şer de Mîr Hisên ji neçarî ji heremê reviya. Siltan Silêmanê Osmanî, Hisên Beg bir Îstenbolê û li wî li wê derê li sêdarê da.

Piştî kuştina Mîr Hisên Beg, Êzdiyan beranberî Dewleta Osmanî şer kirin. Li ser vê yekê Osmaniyan bi devê Miftiyê Dewletê Abu al-Siud Emadî fermana qirkirina Êzidiya derxistin. Piştî vê fermanê rojên zêrîn yên êzdiyan reş bûn.

Piştî kuştina Hisên Beg, Dewleta Osmanî Wîlayetên Mûsil û Hewlêrê di sala dan destê Mîrê Botan Elî Sîdîq Beg kû ew jî bi esil Êzidî bû. Di sala 1534an de Mîr Hesenê kûrê Mîr Sêvdînê, Mîrê Amêdiyê, ku di bin sîwana Dewleta Sefewî de bû bi alîkariya wan êrişê Dihoka Dasiniya kir û Mîrgeha Şêxan û derdorê xist bin destên xwe.

Di encama van zilm û zoran de di lîteratora êzdiyan de mesela '72 ferman' derketiye holê ku ew dîroka xwe wek rêzefermanan dinirxînin. Babaşêxê êzdiyan di derbarê vê meselê de wiha diaxife.

Di çerxa 17an de, Mîrê Êzidî Mîrzayê kûrê Mîr Hesen li dijî Sefewiyan bi Osmaniyan re hevkarî kir. Mîrza bi Mirad Xanê Osmanî re dostanî danîbû. Wî Gundê Başîkê kiribû melbenda Mîrgeha xwe. Dewleta Osmanî Mîrza wek Serlêşkerê Behdînanê tayîn kiribûn. Mirad Xan lêşkerekî mezin bo wilayeta Kurdistanê amade kir ku, pirraniya wan Êzidî bûn.

Begên Kurd yên demê yên wek Xan Ahmedê Mîrê Şarezûr û Erdelanê tarefdarê Dewleta Sefewî bû. Ahmed Xan di sala 1623an de beşek mezin ji Kurdistanê xistibû bin destê xwe û êrişê devera Êzidiyan dikir. Di şerê sala 1639an Mîrza tevî Artêşa Osmanî ajot ser Bexdayê û di şer de serlêşkerê Sefewiyan kûşt.

Siltan Mirad di sala 1650an de ew kir paşayê Wilayeta Mûsilê. Mîrze salekî paşatiya Mûsilê kir. Di dema wî de li heremê



avedanî, çandinî û hêminî pêşket. Kelayekî li ser rûbarê Dijle ava kir kû heta niha şûnewarên wê bi navê Baştabiya mane.

Têkiliyên Mîrze li gel Mîrên Kurd, bi taybet Mîrê Amêdiyê baş bûn. Nav û dengê wî belav bû. Ji ber wê yekê Osmanî jê tirsiyan û jê daxwaz kirin ew here İstenbolê. Mîrza Beg li İstenbolê debar nekir. Bi dizî, berê xwe da Êzîdxanê. Lê di rê de ji alî Tirkan ve hat kuştin.

Piştî vê serpêhatiyê dîsa di navbera Êzidiyan û Dewleta Osmanî de şer çêbûn. Mîrê Êzidiya yê nû, Emadedîn Hekkarî tevî 6 hezar şerwan êriş bir ser Wezîr Melîk Paşa û devera Berwarî Bala û Kela Dûrî jê stend. Dewleta Osmanî bi lêşkerekî mezin û bi alîkariya mîrên heremê, êrişa Êzidiyan şikandin.

Di dema Elî Begê kûrê Hesen Begê de di sala 1831an de fermana herî mezin bi destê Mîr Mehemedê Rewandûzê tê ser Êzidiyan. Ji bilî kuştina çend hezar kesan, 100 hezar kes jî, tên dîl girtin. Hisên Beg kûrê Elî Beg bi zîrekî xwe gihandibû Siltan Ebdilhemîdê Osmanî. Wê demê li heremê li dijî Osmaniyan hin serhildanên Kurdan peyda bûbûn. Osmaniyan hizir dikir ku destê Hisên Begê di van bûyeran de heye û ew ji holê rakirin.

Di sala 1892an de di dema Mirza Beg de, Ferîk Wehbî Paşa yê Osmanî êrişê Şingalê kir. Mîrze beg ji tirsa bû Musluman. Herçend poşman bû jî, ji çavê Êzidiyan ket û birayê wî Elî Beg hat ser hukum. Mîrza Beg li gel jina xwe Meyan Xatun bo 3 salan çûbû sirgûnê. Piştî ku vegeriya herçend mîriyatiya domand jî di vê pêvajoyê de rêvebirî di destê Meyan Xatunê de bû. Ew ji sala 1913an heta 1957an wek jineke navdar, ket nav dîroka jinên hûkûdarên Kurd.

Mîrza Beg di sala 1913an de hat kûştin. Paşe Seîd Begê kûrê Elî Beg hat ser textê êzdiyan. Niha jî kurê Seîd Beg Tehsîn Beg Mîrê Ezdiyên Kurdistanê ye.





**Laleş a Nûranî**

Paristgeha pîroz, cîhê heca êzdiyan Laleşa Nûrani ji mêj ve mulkê êzdiyan e. Şêx Adî yê pîrozê êzdiyan jî li vî bajarokî veşartiye.

Di qewlekî êzdiyan de bi vî awayî behsa Laleşê tê kirin.

*''Erd mabû bihîtî*
*Hidûdekî xweditî,*
*Got: "Ezîzê min, erd bê wê surê natebitî."*
*Badî çil salî bi hijmare*
*Erdê bi xwe re negirt hişare*
*Heya Laliş di nav de nehate xware.*
*Laliş ku dihate*
*Li erdê şîn dibû nebate*
*Pê dizanin çiqas kinyate"*

Laleş yek ji deverên kevnare yê Kurdistanê ye ku bûye peytexteke olî û siyasî. Li gor kîtabeyên ku bidest ketine, diyar bûye ku herem di dema Mîhrperestan de yanê ji roja me herî kêm 2500 sal berê jî şên bûye û nawendeke olî bûye.

Taswîrên Şêşimsê ser dîwarê Laleşê diyariyeke wan deman e. Laleş di dema Med û Sasaniyan de yek ji nawenda Bahdînî yanê Zerdeştiyan bûye û piştî ku derbasî Romayiyan jî bûye ji bo Xristiyanan bûye devereke olî ya girîng.

Bi vî awayî rêçên bawermendên van şaristaniyan li Laleşê hatine kolan. Piştî hatina Şêx Adî ya heremê jî bajêr û dever bûye nawenda ola êzdiyan.

Laliş gotineke Kurdî ye û ji dû pêyvan pêk tê: 'La' tê wate ya 'cî' an jî 'li cem.' Peyva din 'laş" e. Herdû peyv bihevre tên wate ya "cîhê laş". Yanê cîhê ku laşê Şêx Adî lê ye.

Li aliyê din jiber ku Laleş cîhekî pîroze, çi mirovê dema derbasî wê derê bibe divê bêdeng be. Wek mirovekî 'lal û hiş bûyî.'

Di dema serdana me ya Laleşê de em dibin şahidê Cejna Ezî. Ev cejn yek ji girîngitirin îdên Ezdiya ye. Di ola êzdatiyê de ji ber naverok û mîtolojiya dewlemend gelek cejn hene. Cejn û pîrozbahiyên êzdiyan di warê civakî de rola nêzîkkirin, bihevrebûn û xurtkirina piştgiriya bawermendan jî dilîze. Sofiyekî êzdî behsa vê yekê dike.

**Cejnên êzdiyan**

Di dema Cejna Ezî de yek ji îbadeta bawermendan tewafkirina mekan û pîrozgehên olî ye. Ji ber vê yekê heca Laleşê yek ji ferzên bawermendên êzdî ye. Sofiyê dergevanê Laleşê behsa girîngiya tewafa paristgehên pîroz dike.

Dema derbasbûna nav Laleşê kevirê ber derî ji bo rêzgirtinê tê maç kirin.

Herwiha nobedarê ber deriyê vê mekana pîroz jî yek ji sofiyên Lalêşê ye û destên wî jî tê maç kirin.

Yek ji adetên êzdiyan, ku derbasî hindirê paristgehê dibin, jin ji bo xatirên cejnê dilîlînin.

Li geliyê Laleşê li nêzî paristgehê dû avên zelal ku bi navên Kaniya Spî û Ava Zemzem tên naskirin diherikin. Heciyên ku tên Laleşê ji vê avê veduxun û bixwe re dibin.

Dema cejnê de jî gelek deverên cîhanê êzdî tên serdana meqanên pîroz yên Laleşê.

Li gor baweriyan divê kesî derbasî nav Laleşê bibe pêlavên xwe derxe. Ji ber vê yekê Ezdiyên cejndar hemû li kolanan pêxwas digerin.

Pîrozbahiyên cejnê hefteyekî dajo. Di vê pêvajoyê de bi şevê jî komên bawermend digîjin hevûdû û şevên tarî bi qendîl û mûmikan ronî dikin.

Di dema pîrozbahiyan de gelek îbadetên olî tên kirin. Ji ber ku Laleş hemû bi mekan û ziyaretên pîroz hatiye honandin, bawermendên ku serdana vê derê dikin, hemû deverên piîroz tewaf dikin. Dergevanê Laleşê behsa cîhên tewafê dike.

Hin malbat zarokên xwe bi ava zemzemê pîroz dikin.Hin kes bi vexwarina ava Kaniya Spî, beden û giyana xwe xurt dikin.

Kesên derbasî eywana Mekana Şêx Adî dibin, nîşane û qubên derdorê maç dikin û li dora wan digerin.

Di hindirê Laleşê de jî bi taybetî keç û xortên ku duxwazin bigîjin miradê xwe, hin ritûelên pîroz bicîh tînin. Li gor yek ji van ritûelan dibê çarikeke ji mekanê pîroz 3 caran davêjin ser stûnekî.

Dîsa stûnekî hindirê avahiyê ji alî xortan ve tên hemêzkirin. Ev yek jî sê caran tê dûbare kirin.

Di nav Laleşê de çend darên miraza jî hene. Kesên ku benikên ser vê darê vekin û careke din girêk bidin, dûa û senayana dikin, da ku bigîjîn mirazên xwe.

Heta rûxîna rejima Baas, Ezdiyên dervayê herema Laleşê nikaribûn heca xwe bikrana û bihatana serdana Laleşê. Di salên dawîn de ku gelek êzdî êdî bo hec û serdanê tên vê mekana pîroz, pêwîstî bi saziyên tûrîstîk û civakî peyda bûye. Dergevanê Laleşê di derbarê vê meselê de wiha diaxife.

Li aliyê din di nav mêvanên Laleşê de ne tenê êzdî ji gelek deverên cîhanê Kurd û biyanî jî hene. Bi taybetî hersal gelek rojnamevan, lêkolîner, baldar û oldar wek tûrîst tên serdana Laleşê.

*''Erd mabû bihîtî*
*Hidûdekî xweditî,*
*Got: "Ezîzê min, erd bê wê surê natebitî."*
*Badî çil salî bi hijmare*
*Erdê bi xwe re negirt hişare*
*Heya Laliş di nav de nehate xware.*
*Laliş ku dihate*
*Li erdê şîn dibû nebate*
*Pê dizanin çiqas kinyate"*



# Êzdî kî ne?



Macit Aslan

Wekî ku ji serenavê vê hevpeyvînê jî diyar dibe, ev pirs di serê gellek kesên ku bi Ezdiyan re têkildar bûne de der bûye û dibe. Lê piştî êrîşa DAIŞ'ê ya Şengalê pirsa; 'Ma dîsa?' kete serê me û gellek pirsên din xwe bi vê pirsê ve girêdan û êşek zanistî ku nezaniya me li rûyê me dixe xiste serê me. Lewre Arkeolog/Dîroknas'ê Îngilîz Austen Henry Layard'ê ku di navîna sedsala 19. de li Rojhelatanavîn lêkolînan pêk aniye û şahidiya komkujiya Ezdiyan a ku ji alî Dewleta Osmanî ve hatiye pêkanîn kiriye wiha dibêje: "Ezdiyên ku teslîm dibûn jî dihatin kuştin. Ji 4'an 3'yê wan hatin qetilkirin. Di şkeftan de xwe veşartibûn lê piraniya wan ji dûmana agirê ku di devê şkeftan de hatibû dadan fetisîn. Hin ji wan bi topan hatin perçekirin. Du rê dabûn ber wan: Yan wê dev ji ola xwe berdana yan jî wê bihatana qirkirin. Haremên başûrê Tirkiyê bi jinên Êzdi hatibûn tijîkirin. Her sal, waliyên Osmaniyan bi ser wan de seferan dikirin, jin û mêrên wan dikuştin û zarokên wan jî difirotin. Bi vê mebestê me jî bi Amed Gokçen'ê ku, di bin banê Zanîngeha Bîlgî ya Stenbolê de Projeya Xebata Navneteweyî ya bi navê 'Lêkolîna Pergîhevkirina Çanda Êzdiyan' bi rêve dibe hevpeyvînekî çêkir.

**Êzdî kî ne û di navbera êzdayî û kurd an jî kurdîtiyê de pêwendiyeke çawa heye?**

Li gor zanyariyên ku me heta niha bi dest xistiye, meriv dikare beje ku Ezidî û kom û civakên din ên olî di çarçoveyeke teng de nikare bêne nirxandin, ger nirxandineke bi vî rengî bê kirin jî, encamên van nirxandinan wê di derbarê danasîna Ezdiyan de agahiyên pîr û pak nedin merivan. Lê dîsa jî meriv dikare bibêje ku feraseta 'Xweda' ya Ezdatîyê û olên din ên semawî bi her awayî wek hev in. Yanî teqez, afirênerê ard û asîman Xweda ye û Xweda yek e. Cûdahiyên Ezdatiyê yên ji olên din di babetên din de derdikevin pêş û ev babetên din dikarin bibin sedemên êş û azarên mezin. Ev babetên din şayanî lêkolînê ne, lê belê ji ber ku belge û zanyariyên nivîskî yên di derbarê Ezdayîtiyê de pir kêm in û li ser yên heyî jî di derbarê reseniya wan de nîqaş têne kirin û her wiha ji ber ku Ezidî li gelek welatan belav bûne, lêkolîna Ezdayî an jî Ezdayîtiyê zor û zehmet in. Ji ber vê yekê, ji bo têgihiştina bersiva pirsa 'Ezidî kî ne?' û ji bo nirxandineke baş a li ser ola Ezdayîtî pir wext û xebat divê. Tenê bi xebatên kûr û berfireh meriv dikare di derbarê Ezdayîtiyê de daneyên rasteqîn û misoger bi dest bixe.

Ji bilî nîqaşên di derbarê baweriya Ezdayîtî, xaleke din a pir girîng jî pêwendiya navbera Ezdayîtî û Kurdîtiyê ye. Her çiqas piraniya Ezidiyan xwe wek Kurdên Ezidî danasînin jî, piştî geşedanên raboriya nêzîk ku bi guherînên siyasî re derketin holê, civakek Êzdi ku xwe wek kurd nanirxîne jî derkete holê.

**Di derbarê avasaziya olî û civakî ya Ezidiyan de tu dikarî me hinekî agahdar bikî?**

Civaka êzdiyan li çînên mezin ên Kast ên wek Şêx, Pîr û Murîdan hatiye dabeşkirin. Di navbera van kastan de derbasbarî tune û ji ber vê yekê di nav kesên ji kastên cûda de zewac nabe. Serokê karûbarên sekuler Mîr û yê karûbarê olî jî Şêx e. Wek gellek baweriyên din cejn û rojiyên Ezidiyan ku li gor welatên cûda dîrokên wan diguherin jî hene. Laleş navenda herî girîng a olî ya civaka Ezidiyan e. Her sal bi hezaran Ezidî ji bo bibin hecî, di serê cotmehê de diçin Laleşê û ayînên xwe yên hecê pêk tînin. Ezdayîtî li rojhelat derketiye holê, lê gelo Ezdayîtiya ku em li serê nîqaşan dikin ji ku derbûye. Meriv dikare vê feraseta Ezdayîtiyê di sedsala 12. de bikoşe. Tê gotin ku Şêx Adî Bîn Misafir ji Lubnanê, lê li gor hin jêderên din jî ji Şamê hatiye Hekarê. Piştî hatina wî civakeke ku navê wê nayê zanîn xwe li dora wî dicivîne û bi navê Ezdayî xwe dide nasîn. Lê belê Şêx Adî ne damezirînerê Ezdayîtiyê ye û ne kesekî ku xwedî misyona Pêxemberiyê ye. Tenê hewl daye ku baweriya vê civakê hinekî bişibîne baweriya Krîstiyanî û Cihûtiyê û bi vê mebestê hin dezgehan damezirandiye. Piştî hatina Şêx Adî Ezdayîtiyê xwe ji derve re girtiye û hin tiştên nû yên pîroz ji xwe re afirandiye û kakilê xwe derketiye û hinekî din li derdora xwe belav bûye. Di derbarê Şêx Adî de gellek nîqaş hene. Ev niqaş di nav êzdiyan de, bi taybetî jî di nav Ezdiyên Iraqê de bûne sedemê hin pirsgirêkan; Lewre, di gellek çavkaniyan de Şêx Adî wek kesek ereb tê danasîn.

**Di nav cihana Îslamê û bi taybetî di nav alema sunne de di derbarê Ezidiyan de têgihîneke çewt ku bûye sedemê trajediyên dîrokî û rojane heye. Li ser vê têgihîna çewt tu yê çi bêjî?**

Sedemên vê têgihîn û zanîna çewt bi awayekî zelal li ber çavan in. Yên ku îro ji hovîtiya li Iraqê li dij Ezidiyan tê kirin re çavê xwe dişkînin, mazuvanên vê têgihîn û zanîna çewt in jî. Ev kom bi fesadî û reşkirina olî û civaka Ezidiyan re mijûl bûn. Bêguman xala ku Êzdi herî zêde pê dihatin reşkirin jî ev bû; 'Ezdayî ji ziryeta Yezîdê kurê Muaviye tên û navê Êzdi bi zanebûn guhertin û kirin Yezidî. Êdî aşkera tê zanîn ku Ezidî tenê ji ber vê têgihîna çewt bi êrîş û dijatiyên dijwar re rû bi rû mane.

**Meriv dikare beje sedemê êrîşa DAIŞ'ê ya taybet dagirtina Şengalê ev feraseta çewt e? Têkiliyeke wisa heye.**

Teqez bi vê ferasetê re têkildar e, ji ber ku hemû zanyariyên gelemper ên di derbarê Ezdiyan de, zanyariyên ku di çarçoveya rîwangeya mislimanan an jî ya Îslamîk de hatine afirandin in. Lê belê sedem tenê ev nîne. Di rastî de Ezidî bi nezanî, di nav gengeşiya gellek hêz û komên berjewendperest ên rojhelata navîn de man. Ez dibêjim DAIŞ bi taybetî ji bo kuştina Ezidiyan nekete Iraqê. DAIŞ ji bo armancek berfireh a siyasî û stratejîk dest bi hewldaneke bi vî rengî kir. Armanca wê ya sereke bidestxistina Mûsilê bû û ji ber vê yekê Ezidî ketin ber lingên wan. Li aliye din, ji ber ku DAIŞ ji xwe re eniyên cûda venekir û bi aliyekî ve bi pêş neket, li cihê xwe pal da û qada xwe berfireh kir.

**Şûnwarên pîroz ên Êzdiyan ku der in û Şengal ji bo wan tê çi wateyê?**

Gellek şûnwarên pîroz yên Ezidiyan hene û Şengal jî ji van şûnwaran yek e. Sedemê girîngîdayîna Şengalê ya Ezidiyan tirbeyên wan ên li Şengalê ne. Ji bilî vê Şengal cihek çolistan e û di warê aborî û civakî de jî ne dewlemend e. Şengal bi taybetî bi tirba Şêx Şems bûye cihekî girîng. Lê bi taybetî Laleşa rûhanî jî bo êzidiyan cihê herî pîroz ê Ezediyan e.

Di pêvajoya ji destpêka sedsala çûyî yan jî pir pêşdetir heta beriya dagirtina DAIŞ'ê demografiya Êzdiyan a li Kurdistan û cîhanê çawa bû û çawa guherî?

Wekî me got Civaka Ezdayî civakeke nepenî ye. Civakeke ku xwe ji derveyê xwe re aşkere nake. Bêguman meriv dikare li ser sedemên vê nepenîtiya wan şîroveyan bike. Lê belê wek çavkanıyên dîrokî û belgeyan Ezdayî, di Sedsala 12. de derdikevin ser rûpelên dîroka nivîskî. Di sedsalên borî de meriv dikare bêje hemû gelheya Ezidiyan di nav sînorên Osmaniyan de bû. Di nav demê de ji ber zext û zora desthilat û civakên cihê, guherînên sînorên dewletan û geşedanên siyasî, li welatên wek Sûrî, Iraq, Gurcistan, Rûsya, Ermenistan, Almanya û hin welatên din belav bûn. Li gel vê yekê, dîsa jî heta beriya êrîşa DAIŞ'ê piraniya Ezdiyan li Iraqê, bi taybetî jî li Şengal, Laleş û der û berên van navçeyan dijiyan.

Di destpêka sedsala 20. de û bi taybetî di sala 1915'an de piraniya êzdiyan koçî Ermenistanê kirin. Yên ku debara wan baş bûn çûn Gurcistanê yên dewlemend çûn Rûsyayê. Beşek Ezdayiyên ku li Sîbîryayê dijîn jî hene. Ev kom di sala 1924'an de beşdarî serhildana ku bi armanca damezirandina Dewleta Kurdistana Sor jî dibe, dûre ew sirgûnî Sîbîryayê dikin. Beşek Ezdayî jî li Mêrdîn, Hekar, Dîlok, Riha, Amed, Şernex û Batmanê dijîn. Li ser xeta sînorê Qersê jî gellek malbatên êzdi hene. Piraniya Ezidiyên herêma serhedê koçî Ermenistanê kirin. Yên herêma Amed û Cizîra Botan jî koçî Iraq û Ewropayê kirin. Wekî din di salên 1940'an de hin Ezdiyan jî koçî Sûriyê kirine û li deverên nêzîkî sînor bi cih bûne. Ezdiyên ku bûne sedema pirsgirêka babetek siyasî jî yên ku piştî salên 1970'an koçî Ewropa û bi taybetî koçî Almanya kirine. Li gor daxuyaniya Federasyona Komeleyên Ezdiyan, nêzîkî 300 hezar Êzdi li Almanya dijîn û piraniya wan, Ezdiyên Bakurê Kurdistan in.

**Raya giştî ya Kurdistan'ê:**

# Sozê azadkirina Şengal'ê, bi cîh hat

Siyasetmedar, rewşenbîr û akademîsyenên kurd, Operasyona Azadkirina Şengal'ê ji BasNûçe'yê re nirxandin û bibîr anîn ku zilma li gelê Şengal'ê hat kirin, bê bersîv nema û ew sozê toldan û rizgarkirina Şengal'ê ku Serokê Herema Kurdistan'ê Mesûd Barzanî dabû, hat bicîhanîn. Aliyan azadiya Şengal'ê wek mizginiyekî bilêvkirin û balê kişandin ser hewl û keda Peşmerge û Barzanî ji bo parastina xaka Şengal'ê.

**Galip Ensarioğlu (Parlementerê AKP'ê yê Amed'ê): Pêngaveke girîng e**

Parlmenterê Amed'ê yê AKP'ê Galip Ensarioğlu jî bal kişand ser operasyona Şîngalê û di derbarê wê de wiha got: "Şengal, gelekî mazlum, bê çek û bê parastin di deme dawî de hovîtiyek gellek mezin jiyan.Can û malen wan xistin binpê. Êzdi ji ber baweriya xwe gelek caran li dijî komkujiya rû bi rû man e.Ya herî dawî jî wek lekeyekê li dîrokê hat nivîsandin. Baweriya gelê ku li vir dijîn dijîn di bin parastina Rêveberiya Herêma Kurdistan'ê deye ji ber ku Şengal pariyek xaka Kurdistan'ê ye û serfeftina Pêşmergeeyan ji di vî warî de geşedaneke girînge."

**Ziver Ozdemir (Parlementerê AKP'ê yê berê yê Batman'ê): Cihe kêfxweşiyê ye**

Parlementerê AKP'ê yê berê Ziver Ozdemir jî bal kişand ser serkeftina Pêşmergeya a li Şengal'ê û wiha axivî: "Li Iraq û Sûriyeyê gelek mirov ji ber tehde û trajediyê ji war û welatê xwe koç kirin. Koçberên ku di deryayan de fetisîn û di deriyê sînoren de ji serma yê qefilîn û mirin êş ek mezin bû. Jinên Êzdi ji aliyê DAIŞê ve li bazaran hatin firoştin. Bi hêzên Kurdistanî û Pêşmergee bi destxistina Şengal'ê rewşa dilşadiyê ye. Ji Şengal'ê derxistina DAIŞê hem ji bo Kurda hem jî ji bo Herêmê geşedaneke girînge."

**Orhan Miroglu (Parlementerê AKP'ê yê Mêrdîn'ê): Planên Îranê biserneketin**

Parlementerê AKP'ê yê Mêrdînê Orhan Miroglu jî li ser serkeftina Pêşmergeyan rawestiya û da zanîn ku serkeftina Pêşmergeyan destkeftineke mezin e ji bo kurdan û wiha berdewam kir: "Şengal'ê ji bo kurdan girîng e. Ez karim bêjim serketineke mezin e. Hêzên Pêşmergeê pîroz dikim. Şengal parçeyek xaka Kurdistan'ê ye û wê her dem parçeyek Kurdistan'ê jî bimîne. Serketina Şengal'ê ne ji aliyê KDP'ê û Partiyên kurda ji aliyê xala gîhaştina berxwedana kurdan girînge. Ji bo neteweperweriya kurda geşedaneke girînge. Hêzên Pêşmergee û Rêveberiya Herêma Kurdistan'ê li dijî DAIŞê hêzêke bi bandor e." Di berdewamiya axaftina xwe jî de Miroglu wiha domand: "Rizgarkirina Şengal'ê ji bo yekîtiya kurda girînge. Ji aliyekî Îran ji aliyê din ve jî polîtîkaya Esad ya ku parî bik – bi rêvebibe li dijî her du aliyan jî bu bersivek."

**Sezgin Tanrıkulu (Parlamaneterê CHP'ê yê Stenbol'ê): Rizgarkirina Şengal'ê em kêfxweş kirin**

Cihgirê Serokê Giştî yê CHP'ê Sezgîn Tanrıkulu destnîşan kir ku Şengal bo Êzdyan cihek muqedese û got ku ji sala borî heta niha gelek êş hatine jiyandin. Tanrikulu got: " kurdan dest dane hevdû û bajarê Êzdîyan Şengal'ê rizgarkirin û evê yek jî em kêfxweşkirin. Ev bi yekîtî û piştgiriyê derket holê. Di demên pêş de çi bibe em nizanin. Lê di pêşerojê de emê bi hevdû re bibînin. Gihîştandina Êzdiyan ya Şengalê girînge. Pêşveçûnan din emê bi hevdû re bibînin.

**Dengir Mir Mehmet Fırat (Parlementerê HDP'ê yê Mêrsîn'ê): Hestên netewî derketin pêş**

Parlementerê HDP'ê yê Mêrsînê Dengir Mir Mehmet Fırat jî bal kişand ser rizgarbûna Şengal'ê û wiha axivî: "Cara yekem e ku li dijî DAIŞ'ê darbeyeke mezin tê lê xistin. Bi rastî jî ji DAIŞ ji holê rabe fedakariya kurda herî mezin kir. Ez bawerim kurd bi vê operasyonê li dinyê dilgermiyek herî mezin girtin. Ev operasyon yekîtiya Başûrê Kurdistan'ê pêk anî. Hestên neteweyî ya kurda ku li çar aliyan belavbibû nêzîkî hevdû bû. Li gorî min ev operasyon pêngava herî mezin a ji ji bo hereketa neteweyî ya kurda ye."

**Altan Tan (Parlementerê HDP'ê yê Amed'ê): Divê kurd yekîtiya xwe ava bikin**

Parlamenterê HDP'ê yê Amed'ê Altan Tan jî eşkere kir ku ev serkegtin hewceye bibe hokara hevgirtina kurdan û wiha got: " Serketin ne tenê ji bo kurda ji bo hemû mazlûm û mexdûra bi xêr be. Êzdi rastî neheqî û komkujîyeke mezin hatin. Xwedê rewşek wisa şanî me nede. Li Rojhilata Navîn yekîtiya kurdan girînge. Kurd, li Rojhilata Navîn di berxwedanên xweyî mafdar nebin yek wê ji gur û çûka re bibe xûrê. Yekîtiya di nav kurda divê bi hiqûqî û mafî hewceye bidome. Bi gelên din re biratî û yekîtî divê avabibe."

**Faysal Sarıyıldız (Parlementerê HDP'ê yê Şirnex'ê): Em ê biserkev in**

Parlamenterê HDPê yê Şernexê Faysal Sariyildiz jî li ser rizgarbûna Şengal'ê wiha axivî: " Niha tiştê ji rizgarkirina herî girîng tir mil bi mil şerkirina hêzên HPG, YPG û Pêşmergeeyane. Ev ji rizgarkirina Kobanê jî girîngtire. Dema meriv bi rihê neteweyî hereket bike meriv kare li çar aliyê Kurdistan'ê li dijî neyara şer bike. Ku ev rih hebe meriv kare behsa rizgariya mayînde bike. Bi gûmanim ku ev rewş wê ji mere yekîtiyê bine û berjewendiyê biçûk yên siyasî li aliyekî bihêle. Dema me berjewendi li aliyekî hişt wê demê yê karibin bêjin her li ku be şer li ku derkeve hêza me heye û em ê karibin neyara têk bibin."

**İbrahim Ayhan (Parlementerê HDP'ê yê Riha'yê): Şengal serkeftineke girîng e**

Parlamenterê HDP'ê yê Riha'yê Îbrahîm Ayhan jî wiha axivî: " Serkeftina Şengal'ê ji bo avakirina jiyana hevpar serkeftineke pir girîng e. Em karin vê serkeftinê li dijî hovîtî û çorsiya DAIŞ'ê di gelê kurda de wek serkeftina mirovatiyê bi nirxîne. Li Şengal'ê jin hatin firoştin. Bi dehan jin û zarok hatin kuştin. Ev bajarê ku li dijî van hovîtiya maye pêngava azadkirinê wê hem erênî hem jî girînge. Terorên ku ji Şengal'ê hatiye derxistin bu ye sedema

**Adem Geverî (Parlementerê HDP'ê yê Wan'ê): Êzdi, taybetmendên civaka men e**

Parlementerê HDPê yê Wanê Adem Geverî jî li ser mijarê rawestiya û wiha axivî: "Bê gûman rizgarkirina Şengal'ê di dilê hemû kurdan de bûye sedema bextewariyê. Di demeke ku komkujî û êrîşên li ser kurda zêde bûye ev serketin ji bo be bû moral. Em spasiyê xwe ji bo hemû Pêşmergee û şervanên kurd re dişînin. Em deyndarê hêzên ku li wirin, ewan ji bo siberoja me tifaq û yekîtiya me karekî mezin bi ser xistin." Geverî wiha domand " Di serî de çavê gelê me yî Êzdi ronî be, ew taybetmendiya civakamenin, ew taybetmendiya çandamenin, divê em li wan xwedî derkevin


Dengir Mîr Mehmet Fırat


Altan Tan


Galip Ensarioglu


Orhan Miroglu


Faysal Sarıyıldız


İbrahim Ayhan


Adem Geveri


Mehdi Zana


Sezgîn Tanrikulu


Kemal Burkay


Sertaç Bucak


Seid Memûzînî


Dr. Mehmûd Osman

û bi parêzin. Ez bi gûmanim ku Rêveberiya Herêma Kurdistan'ê Şengal'ê bi Herêma Kurdistan'ê ve girêdin û bikin parêzgerî wek pariyek Kurdistanê. Divê em vê serkeftinê ji bo siberojê pêşkêşî gelê Êzdi bikin.hêvîdarim ku çar aliyê Kurdistan'ê li gelê Êzdi xwedî derkevin. Dîsa jî şervanên ku li wir şer kiriye, Pêşmergee û gêrîllayê PKKê re spasiye xwe dişînin."

**Erol Dora (Parlementerê HDP'ê yê Wan'ê): DAIŞ'ê li wir trajedîyek hişt**

Parlementerê HDP'ê yê Mêrdînê Erol Dora jî nerînên xwe yî ji bo rizgarkirina Şengal'ê anî ziman Dora wiha aixivî: " Ji bo rizgarkirina Şengal'ê ez gelekî bextewarim.DAIŞ, bi sedan jinên Êzdi li bazaran wek xenîmet hate firoştin. Bi hezaran mirov ji warê xwe koçkirin. Piştî êrîşên DAIŞ'ê me herêm û Laleşê ziyaret kir û me ew dram di cîh de dît. Bi taybetî DAIŞ, êrîşî neteweyên kêmnetewe yên wek sûryanî û Êzdi dike û yên ku herî di bin bandora êrîşa jî dimîne ewin. Em dixwazin ku gelê Êzdi vegerin welatê xwe û li hemberî êrîşên di siberojê de ji aliyê Yekîneyên Neteweyî bêne parastin."

**Ali Atalan (Parlementerê HDP'ê yê Mêrdîn'ê): Ji bo Kurdistan'ê rojek dîrokî bû**

Parlementerê Êzdi yê HDP'ê yê Mêrdîn'ê Ali Atalan ji bo rizgarkirina Şengal'ê wiha axivî " Rizgarkirina Şengal'ê ji bo kurd û Kurdistan'ê rojek dîrokî bû û ji bo civaka Êzdi ya re jî wek mîlad bê hesibandin. Ev operasyon gelek dîrokî û stratejîke. Rexisina herîhov ya li rojhilata navîn DAIŞ, wek ku tê zanîn sala borî li ser gelê Êzdi êrîşên hovîtî pêk anîbû. Bi hezarên mirov kuştin û bi hezaran jî revandin. Jina û kîza bi awayekî hov û dijî mirovatiyê ew li bazaran firotin û qirkirin pêk anîn."

Atalan wiha domand " Hêzên neteweyî yê kurda bi yekîtiyê gavek dîrokî avet û xwedî eslê kokên kurda Êzdi yan ji wê rewşê xelaskirin. Yên ku ev operasyon pêk anî ez wan ji dil û can pîroz dikim. Bi gûmanim ji bo bi destxistina statû yekê wê gava pêşî be. Li ser vê ji bo avakirina pêşerojêk bi ewlehî, azad û birastî jî demokratîk û bi mizgînî wê pêk were. Hêvîdarim rizgarkirina Şengal'ê wê bibe sedema yekîtiya neteweyî ya kurda. Şengal digel veqetandin û cudabûna polîtîk ve jî bi yekîtî be. Parastina Êzdiyan û azadkirina wan ji bo yekgirtiyê xala herî bê pirsgirêke."

**Mehdi Zana (Şaredarê berê yê Amed'ê): Em kêfxweş in**

Siysaetmedar û nivîskar Mehdi Zana eşkere kir ku ew gelekî kêfxweşe ku hêzên kurd serkeftineke bi vî rengî bidestxistine û wiha berdewam kir: "Pir girînge. Çava guhê hemû kurda li wire. Ji demek dirêje ku di bin desta deye. Ew der, cîhê gelê Êzdi û navenda wan e. Em pir bextewarbûn. Pir kêfxweşin. Ez ji nûçeyan jî temaşe dikim weşana zindî dikin û Pêşmergee diaxive, hê jî li DAÎŞ'ê digerin lê rizgarkirine. Şengal pariyekî Kurdistan'ê ye. Hem cîhekî pîroze hem jî navenda ol a Êzdî'ya ye. Heta niha paribûn me têk dibir ne ev ba em têk nediçûn. Li Kurdistan'ê li gel binerin, tu kes wek kurda ji mirova hez nake û rêz nagre. Vêna nivîskarê hemû dinyê dibêjin. Binêrin li Farqînê karmend du sala dimîne û dema dîçe bi girîve diçin."

**Sertaç Bucak (Serokê PDK-Bakûr): Li ser navê mirovahiyê ev serfiraziyek e**

Serokê Giştî yê Platforma Demokratên Kurd (KDP) Sertaç Bucak gotinên Mesud Barzanî yê 'Em ê Şengalê rizgarbikin' bibîr anî û wiha got: "An niha ev soz pêkhatiye. Rizgarkirina Şengal'ê serfiraziya gelê kurd ya li dijî terora DAIŞ'ê ku li hemberî gelê Kurd qetlîam û neheqîyek mezin pêk anî bû. Di sedsala 21.'de rêxistina terorê ya DAÎŞ'ê li hemberî kurd'an qetlîam û neheqîyek mezin pêkanî ji ber vê yekê jî Rizgarkirina Şengal'ê ji bo gelê kurd serfiraziyek e. Her wiha Bucak destnîşan kir ku ev serfirazî, serfiraziya cîhanê ye û wiha dom kir: "Gelê kurd bi vê serfiraziyek mezin bi destxist. Divê gelê kurd kêfxweşibin ku Mesud Berzanî ev operasyon bi rêvebiriye. Em ji ber vê gelek kêfxweşin. Rizgarkirina Şengal'ê tê wateya rizgarkirina Musul'ê. Bi rizgarkirina Musulê dê DAIŞ jî bi qede. Ji ber vê yekê operasyonên Şengal'ê yên leşkerî û siyasî jî gelek girînge. Di rizgarkirina Şengal'ê de kî cîh girtibe xwedê jê razî be.

**M. Emîn Kardaş (Serokê PDK-T): Em minetdarê Peşmerge û Barzanî ne**

Serokê Partiya Demokrat a Kurdistana Tirkiye'yê (TKDP) Mehmet Emîn Kardaş jî got ku ev ji bo gelê kurd mizgîniyek e. Ew bi mehane li benda vê mizgîniyê ne. Kardaş destnîşan kir ku ew bi dil û can piştgirî didin û got ku ew operasyona ku di bin Serokatiya RHK'ê Mesûd Barzanî de bi serket û wiha domand: "Kêfxweşiya xwe nikarin bi peyvan bînin ziman. Em gelek kêfxweşbûn. Birayên me yên Êzdîî êdî di nav azadî û aramiyê de dikarin vegerin warê xwe. Rizgarkirina Şengal'ê me gelek kêfxweşkir. Divê mizgîniya dûyemîn jî ji bo rizgarkirina Musul'ê be. Em bi hêvîne ku Peşmerge dê di demek kin de yê wê jî rizgar bike. Bi taybetî spasiyên xwe ji bo Peşmerge û Brêz Barzanî re dişînin.

**Mustafa Özçelik (Serokê PAK'ê): Şengal a azad dê rêya Kurdistan'a serbixwe veke**

Serokê Giştî yê Partiya Azadiya Kurdistan (PAK) Mustafa Özçelik diyar kir ku rizgarkirina Şengal'ê ji bo birîna di dilê kurd û Kurdistaniyan de were pêçandin gaveke dîrokî ye. Ozçelîk destnîşan kir hêviya wan ewe ku ev operasyon rê li Kurdistan'a azad veke û wiha berdewam kir: "Hêviya me ewe ku Şengal'a azad rêya Kurdistan'a serbixwe veke. Mesûd Barzanî wek serfermandarek vê opêrasyonê bi rêvebir. Hemû Kurdistanî divê spasdarên Peşmerge, hêzên hevpeymaniyê û kesên ku tevlî vî şerê bûne bin. Bingeha pêkanîna xala 140'î pêkhatiye. Divê êdî Başûrê Kurdistana serbixwe be. Ev gavekî dîrokî ye."

**Kemal Burkay (Sîyasetmedar): Demeke kin de serkeftinek mezin**

Serokê berê yê Hak-Par'ê Kemal Burkay ani ziman ku rizgarbuna Şengal'ê ew gelek kêf xewş kirine. Burkay ragihan ku ev operasyon bi amadekariyek baş û di demeke kin de bi ser ketiye û got: "Ez cenabê Barzani û Peşmerge yan piroz dikim, hevîdarim ku di demeke kinde zirar û ziyanên heremê bêne çareserkirin û gelê Şengal vegerin warê xwe û birînên wan bêne pêçandin."

**Mesut Tek (Serokê PSK'ê): Pêwist e Şengal were ser Kurdistan**

Serokê Partiya Sosyalîst a Kurdistan PSK Mesut Tek destnîşan kir ku ev ji bo gelê kurd serkeftineke. Mesût Tek got Hikumeta RHK'ê soz da Êzdya û ev soza xwe bi cih anî, ev gelek muhîme. Tek wiha axivî: "Ji ser axa wan a pîroz DAÎŞ'ê paqijkirin. Em nêrînên Mesud Barzanî yên ku di civîna li çiyayê Şengal'ê de dabû girîng dibînin. Em jî hestên wî yên li dijî Êzdyan parvedikin. Ew hest, hestên me ne jî. Ji hev kirina Êzdîî û kurd ne mumkune. Pêwiste Şengal were ser Kurdistan û rêveberî jî di destê wan de be. Ev serkeftina hemu kurdane.

**Musa Kaval (Akademisyen): Êdî kurd li Rojhilata Navîn aktorek girîng e**

Akademîsyen Musa Kaval amaje kir ku gelê kurd bi piştgiriya koalîsyonên navneteweyî li dij DAIŞ'ê gelek serfiraziyan pêk anîye û ev yek jî rola kurd bi hêztir kiriye. Kaval got ku ev şerê hanê dibe ku 10 sal bidome dibê Kurd hêzên xwe yên leşkerî mezintirîn bikin. Kaval got: "Hebûna kurdan bi awayekî leşkerî û siyasî di Rojhilata Navîn de bilintir dibe. Ji bo demokratîkbuna Rojhilata Navîn roleke muhîm dikeve




Erol Dora | Ali Atalan | M. Emîn Kardaş | Mustafa Ozçelîk | Mesut Tek | Şakir Epozdemîr

ser milê kurdan. Divê kurd bibin dewlet. Kurdistaneke serbixwe muhîme. Ji bo pêşerojê ji bo gelê Rojhilata Navîn dê bibe navenda îstîkrarê." Kaval diyar kir ku hebûna kurd di operasyona Şengal'ê de derxiste holê ku kurd hem bi leşkerî û hem jî siyasî aktorekî muhîme. Ji ber vê hêzên navdewletî dibê xwestekên kurda an qebul bike. Pêdiviya guhertina siyaseta ereb û tirkan ya înkarkirina kurdan hewceye were guhertin. Di Rojhilata Navîn de dibê siyaseta azadiyê bê kirin. Her çar perçeyên Kurdistan da hewceye mafê kurdan bêne qebûlkirin. Di serxwebûna Başurê Kurdistan'ê de pirgirêk dernexin.

**Şakir Epözdemîr (Nivîskar): Ev serkeftin cihê serfiraziyê ye**

Nivîskar û siyasetmedarê kurd Şakir Epözdemîr jî bal kişand ser serkeftina Pêşmergeyan û wiha axivî: "Serkeftina Tevgera Rizgarkirina Şengal'ê bi plan û bernameyên Brêz Mesûd Barzanî ve bi rê çû û ev yekê jî kurd û Kurdistaniyan kêfxweşkir. Ev serfirazî di wîcdanên navneteweyî de cihê xwe dît. Ev serfiraziya DYA'yê, Wezaretê Pêşmergeyên Kurdistan, Serokê Dewleta Federal a Kurdistan û tevgera piştgiriyên hemû kesane. Ev pêşketin di nava 24 seatan de pêkhat. Ev destxistina dîrokiye ji bo kurdan. Ez dixwazim PYD û PKK jî li vê derê rol bigrin. Sekna Peşmerge ya li Kobaniyê çewabe divê helwesta PKK'ê jî wisa be, ya rast ew e."



**Şêx Mîrza Koyun (Şêxê êzdiyan-Almanya): Ji bo kurdan serfirazî yê**

Şêx Mîrza Koyun ku şêxê ezdiyan û li Almanya dijî jî bal kişand ser rizgarbûna Şengal'ê û wiha axivî; "Ez ji bo rizgarkirina Şengal'ê weke êzdiyekî, weke şêxekî baş difikirim, kêfxweş im û serfiraziyê ji bo tevahiya Êzdiyan, tevahiya kurdan û taybet Êzdiyan pîroz dikim." Di berdewamiya axafrina xwe jî de Şêx bal kişand ser hemahenhiya hêzên kurd ê li Şengal'ê jî û wiha domand: "Ji bo rizgarkirina Şengal'ê hêzên me yên kurd; YPG, YBŞ, HPG û Pêşmerge bi hevre têkilî çêkirin û yekîtiyek çêkirin û ji bo Şengal'ê pişta xwe dane hev. Ev ji bo me serfiraziye. Înşallah tûm û tûm bi hev re piştgiriya hev bigrin, ez pîroz dikim û kêfxweş im. Ez wek êzdiyekî, şêxekî êzdî ez dixwazim yekîtiya wan çêbibe û bi kurdîtiya xwe ve girêdayî bin. Alîkarî çi lazim be; eger Kobanê be eger Şengal'ê be, eger Kurdistan a Bakur be; li Farqîn'ê, li Cizîr'ê, li Nisebîn'ê madî û manevî alîkar be ji vê tişt re."

**Mele Mihemed Şimşek (Serokê DİAYDER'ê): Xwedê yekitiya kurdan bidomîne**

Serokê DİAYDER'a Stenbol'ê Mele Mihemed Şimşek jî bal kişand rizgarkirina Şengal'ê û wiha axivî: "Destê wan sax be û Xwedê alîkarê wan be. Rizgarkirina Şengal'ê aqûbet rizgarkirina temamê welatê Kurdistan'ê be. Kî li dijî DAIŞ'e destê xwe bilind bike ez dibêjim "bila destê wan bibe destê Hz. Elî û ew qas bi hêz û quwet." Ez malavatî li wan dikim û wan kesê ku Şengal rizgarkirine. înşallah wan cihê din jî tevahîn bên rizgarkirin. Bi tevahî misilman, kurd û însan di şerê vî zalimê de jê xilas bibe. Ez dixwazim, ez diayeke din jî bikim; Xwedê yekîtiya kurdan ber dewam bike" Şîmşek bang li xelkê êzdî jî kir û axaftina xwe wiha bi dawî kir: "Êzdî jî ji ola xwe xwedî derkevin, erka xwe xwedî derkevin û netewa xwe xwedî derkevin. Ez dibêjim bila yekîtiya xwe çêkin; yekîtî de feyde pirr heye û yekîtî de xilasî heye."

**Cemîl Serhan (Serokê Federasyona Êzdiyan): Divê hêzeke kurdan a hevbeş bê avakirin**

Serokê Federasyona Êzdiyan Cemîl Serhan jî serkeftina Pêşmergeyan û rizgarbûna Şengal'ê bilind nirxand û wiha berdewam kir: "Hêzên Kurdan bang dikin yekîniyekî hevbeş ku bê damezrandin û hemû kurdan temsîl bike. Kurdên êzdî bê xwedî bûn heta roja îro, bê serok bûn. Her tim rastî êrîşan hatine. 73 ferman li ser kurdên êzdî hatine. Li vir de tê xuyakirin sînyalê yekîtî pêwîst e, sînyalê hevgirtinê yên hevbeş pêwîst in. Eger ku wisa çênebe çi qas Şengal bê rizgarkirin jî careke din dijminê kurdan dijminên kurdên êzdî êrîşe xwe ber dewam bike. Ji bo wê çendî her tiştê nan û av bêhtirîn û girîngtirîn hêzekî hevbeş bê avakirin."

**Qasim Şeşo (Fermandarê Peşmergeyên Êzdi): Tola 74 fermanan hate stendin**

Fermandarê Pêşmergeyên Şengal'ê Qasim Şeşo serkefetina Şengal'ê wiha nirxand "Bi lehengiyek mezin ya Pêşmergeeyan azadkirina Şengal'ê ji bo hemû dinyê û neyarê kurda re bû. Kurd bi hêz dibin û wê bi hêz jî bibin dan. Birayênmeyî ku polîtîkayên şaş birêve dibin jî bila zanibin ku Pêşmergee tola 74 qirkirina hilaniyê. Hisabê xwîna rijiyayî pirsîne û qet ne ma destûrê didin ku komkujiyek din pêk bê. Ez vê serkeftina ku bi bêşdarbûna serfermandar Serok Mesûd Barzanî hatiye bi dest xistin li civaka Êzdi û gele kurd pîroz be."

**Dr. Mehmûd Osman (Siyasetmedar): Şengal xwedî cihekî stratejîk e**

Dr. Mehmûd Osman, piştî rizgarkirina Şengal'ê li ser serkeftina leşkeri nerînên xwe ji bo BasNûçe yê ravekir. Siyasetmedarê bitecrûbe yê kurd Osman, " Şengal'ê ji bo siyaseta kurda bajarekî girînge û li cîhekî stratejîk e. Ji ber vê yekê Şengal'ê ji aliyê DAIŞÊ ve hate dagirkirin. Kurd û bi taybetî gelê Êzdi ji rizgarkirina Şengal'ê bextewari hew kirine. Berpirsyariya Hikûmeta Herêmê êdî ji nû veavakirina Şengal'ê û bihêzkirina parastinê ye. Ji bo parastin bê bihêzkirin divê Şengal'ê bibe parêzgarî." Osman axaftina xwe wiha domand " Spasiye xwe ji hêzên Pêşmergeê û yên ku keda wan di operasyona rizgarkirina Şengal'ê de he ye dişînim. Şengal'ê xaka Herêma Kurdistan'ê ye û divê ew îxtîlafên di nav aliyên hêzên kurda de ku li ser Şengal'ê derketibû ji bo berjewendiyê Şengal'ê bêne çareserkirin.

**Latif Mustafa (Parlamenterê Goran): Şengal wê bibe sedema çareserkirina qeyrana**

Latîf Mûstafa yê ku di qeyrana Başûrê Kurdistan'ê de di nîvenda qeyranên siyasî Parlamenterê Hereketa Goran de cîh girtiye jî di derbarê rizgarkirina Şengalî ji BasNûçe'yê re axivî Mûstafa," rizgarkirina Şengal'ê ne tenê ji bo gelê kurd ji bo hemû dinya ya şareza bû sedema bextewariyê û kurd di vê mijarê de pesnê xwe bidin. Serkeftinên leşkerî serfkeftinên siyasî jî bi astek bilind potansiyelê zêde dike. Bi vê serkeftinê erka erênî jî derket holê û ez bawerim wê li Herêma Kurdistan'ê jî ji bo çareserkirina qeyranên siyasî jî erênî be. Ev serketin ne ji bo pirsgirêkên siyasi yê nav Herêma Kurdistan'ê tenê, ji bo siyaseta derve yî welat jî gelek destkeftiyan bi xwe re bîne. Êdî her partiyên siyasi divê dev ji hisabên biçûk berde û li ser serxwebûna Kurdistan'ê bisekkine."

**Seid Memûzînî (Rêvebirê PDK'ê): Êdî dema vegera malê ye**

Berpirsyarê Partiya Demokrata Kurdistan'ê Seîd Memûzînî jî nerînên xwe anî ziman Memûzînî, " Şengal, ji bo dîroka kurda mîlad e. Bi serkeftina Pêşmergeeyan kurd, li dinyê bi heyraniyek mezin bi dest xistin û di vê heyraniya mezinde jî para Serokê Rêveberiya Herêma Kurdistan'ê Mesûd Barzanî ye ku wek serfermandar bêşdar bibû û ji bo Pêşmergee jî bi bû moral. Piştî vê astê bi pêşanî ji nûveavakirina Şengal'ê û vegera birayên menî Êzdi ye. Em nikarin wenda û canfîda ya vegerînin lê qet nebe divê em bi ewlehî vegera wanî welatê xwe bi derfet bikin. Ev berpirsyariya me ye. Pêşmergee peywira xwe bi cîh anî."

# Dêra Zahferan'ê erdê xwe vergirt



Gültekin Çelik

Dêra Zahferan'ê ji navenda Mêrdîn'ê 4 kmya dûr e. Li ser quntarê çiyayekî û deşta mezra botan jî di bin sînga wê de ye. Wek her gelên din ên vê erdnîgariyê, Suryanan jî para xwe ji zext û zorên hukumranan wergirtine û ji ber vê yekê hê jî di civatek girtî û bi zimanekî wendayî dijîn. Li Mêrdîn'ê Dêra Zahferan'ê ku erdê wê ji aliyê dewletê ve hatibû desteserkirin, ji bo mesîhiyan yek ji grîngtirîn dêran e. Di 1977'an de tapoyê nêzîkî 439 donimî erdê vê dêra kevnare, ji alî qadastroyê ve jê hate stendin û radestî Rawejkariya Gencineyan hate kirin. Di 2005'an de Komeleya Lênêrînê, ji bo restorekirin û amadekirina ayînê ya Dêra Zahferanê, serî dadgehê da û di 2007'an de pêvajoya têkoşîna mafê dêrê destpêkir.

**Tekoşîna hiqûqî encam da**

Dêra Zahferan'ê bi rêya Weqfa Dêran di 2005'an de dest bi têkoşîna dadî kir û doz li Dadgeha Hiqûqê vekir. 439 donim erdê ku ji mêj ve li ser navê dêrê bû, di sala 1977'an de, ji aliye Gerînendehiya Giştî ya Qadastroyê ve derbasî ser navê Rawejkariya Gencineyê bûbû. Ji ber Dêra Zahferan'ê li derveyê bajar di quntara çiya de bû, suryan ji vê kiryarê dereng haydar bûn û ji ber vê yekê jî doza paşvestendina erdê dêrê dereng ket. Ev doz ne doza yekem e, gelek dêr, gund û erdê suryaniyan bi bûne sedema doz vekirinê û Suryaniyên Mêrdîn'ê bi salan in bi vê pirsgirêkê re rû bi rû ne. Li gel vê yekê jî suryan, dev ji doza mafê xwe bernadin û vê têkoşîna xwe didomînin. Bi saya vê têkoşînê, Dêra Zehferanê, di sala 2013'an de dozêkê qezenc kir; Lê belê ji ber ku doz li Dadgeha Bilind tê dîtin, dîsa hate taloqkirin, lê axir di encama vê tekoşînê de biryar tê dayîn ku tapoyên dêrê ji dêrê re bê radestkirin.

Ev biryara dadgehê ji bo hemû suryaniyan bû cihê kêfxweşî û hêvîdariyê. Şêwirmendê Weqfa Dêra Suryanî ya Qedîm û Serkeşeyê Dêra Kirklarê Gabrîel Akyuz, li ser biryara bidestxistina erdên Weqfa Dêrê da zanîn ku ev babet ne ji xwedîbûna axa dêrê, ji çewtiya Gerînendeya Qadastroyê pêk hatiye, gelek erdên wan ji ber vê çevtiyê ji alî gundî û Rawejkariya Gencineyê ve hatine desteserkirin. Akyuz got: "Ji ber gund û erdên me li ser navê keşeyşên me dihatin tapokirin û keşeyên me azeb bûn û zarokê wan tune bûn, ew erd û gund ji kesên ku piştî mirina keşe ku mîratgirên wan tunne bûn, kî bikar bihanîya ji wan re diman an jî ji alî wezaretê ve derbasî ser navê Rawejkariya Gencineyan dikirin. Gundên me yên ji şêniyên vê dêrê re mane jî heye û Gundê Bikêrê yek ji wan gundan e. Her wiha Dêra Zahferan'ê jî rastî çewtiya qadastro û liberabûnen gundiyan mabû û di vê meseleyê de jî em bi heman pirsgirêkê re rû bi rû man. 439 donim erdê Weqfa Dêra Zahferan'ê jî, ji ber heman pirsgirêkê Ji 2007'an ve ye ku di dadgehan de doza wê tê kirin. Axir Dadgeha Herêmê biryara da ku ev erd li me bê vegerandin û em bi serketin. Lê belê ji ber ku Rawejkariya Gencineyan dozê gelek caran rawestand, doz çû Dadgeha Bilind û hat. Piştî pêvajoya tekoşîneke 10 salan a dozî, Dadgeha Bilind, beriya 2 hefteyan biryar da ku erdê me li me bê vegerandin."

**Pêvajoya dadgehê**

Piştî ku erdên Dêra Zahferan'ê li ser navê Rawejkariya Gencineyan tê tomarkirin, rêveberiya weqfê di 6'ê Mijdara 2007'an de, ji bo erdên xwe ji destê Rawejkariya Gencineyan werbigire serî li dadgeha hiqûqê ya Mêrdîn'ê dide û pêvajoya doza erdê dêrê destpê dike. Lê belê piştî ku di 2011'an de ji ber yasaya Weqfan bi biryarekek demkî tê guhertin, rêveberiya Weqfa Dêrê jî ji bo ku ji vê yasayê sûd werbigire û erdên xwe paşve werbigire dîsa serî li dadgehê dide. Gabrîel Akyuz di derbarê vê pêvajoyê de jî anî ziman ku ev serlêdana wan ji alî Meclîsa Giştî ya Weqfa serlêdanan ve hatiye redkirin û ji ber vê yekê Weqfa Dêrê careke din doz vekirî ye. Akyuz wiha dom kir: "2. Dadgeha Hiqûqê ya Eslî ya Mêrdîn'ê di sala 2013'an de, ji bo Weqfa Dêrê, raporên pîsporan û derbirinên guwahan da berçavan û biryara radestkirina tapoyên Weqfa Dêrê da. Lê belê piştî biryara dadgehê, Rawêjkariya Gencineyan dîsa doz li Dadgeha Bilind vekir. Her çiqas ev bûyer di 2013'an de bi serkeftina têkoşîna Dêra Zahferan'ê encam dabe jî, mixabin Rawejkariya Gencineyan dozê arasteyî Dadgeha Bilind kir û li Dadgeha Bilind jî nivîsînan li 16. Daîreya Hiqûqê bi dawî kir. Her çiqas Dadgeha Herêmî redkirinê bîne ziman jî, Dageha Bilind vê redê piştguh kir û biryar da ku erdên doz li ser hatibûn vekirin li Dêra Zahferan'ê bê vegerandin. Serokê Weqfa Dêr a Suryanî ya Qedîm û Dêra Zahferan'ê Îliye Kirilmaz gazinên xwe yên di derbarê desteserkirin erdên dêra wan anî ziman û got: "Nêzîkî45 salan, erdê dêra me bêyî vîna me wek fermî ji dest me hatibû stendin. Dema me ew bihîst, me tafilê serî li dadgehê da û piştî pêvajoyeke dirêj me dozê qezenc kir. Gellek erdên me yên ku bêyî vîna me niha di destê Rawêjkariya Gencîneyan de ye. Ji ber vê yekê em ê tekoşîna xwe bidomînin da ku em wan jî bidest bixin.

**Qedera dêrên suryaniyan yek e**

Mor Avgînê ku li gel mesîhiyan wek Îsayê 2. tê nasîn 300 sal piştî Îsa tê Mezopotamya û û li quntarê Çiyayê Bagokê Dêrekê ava dike û karên mîsyoneriya Krîstiyaniyê û gihandina keşeyan dike. Ev dêra ku bi ser navê Mor Avgîn, heta sala 1970'an jî xizmetên ayînî pêk tîne, piştî ku ji ber hin sedeman piraniya Suryaniyan ji warê xwe derdikevin û li welatên Ewropayê bi cih dibin ji bêçarî xizmetên xwe radiwestîne. Ji ber vê yekê wek dêra Zehferanê, di sala 1970'an de erdên wê jî ji alî Gerînendehiya Qadastroyê ve tê desteserkirin û li ser navê Rawejkariya Gencineyê tê tomarkirin. Civata Suryaniyan, di 2008'an de dêrê restore dikin, ji bo erdên dêrê li dêrê vegerînin serî li dadgehê didin. Lê belê her çiqas dêr, di 2009'an de dest bi ayînan bike jî hin şêniyên gundên derdorê û Meclîsa Giştî ya Weqfan tu mafî li wan nabînî û doz didome.

Dêra Mor Gabriel ku di nav mesîhiyan de wek 'Qudus a Dûyem' tê binavkirin, di destpêka sedsala 16. de li navçeya Midyadê ya Mêrdîn'ê hatiye avakirin. Di 2009'an de Muxtarên gundên derdorê li hev dicivin û serî li Rawêjkariya Gencineyan didin da ku 276 donim erdê vê dêrê ku li derdora dêrê ye bi dest bixin û di encamê de bi dest dixin. Her wiha Dadgeha Bilind jî biryar dabû ku erd ê gundiyan e. Lê belê piştî Yasaya Weqfan a demkî tê derxistin erdên vê dêrê ji li dêrê hatin vegerandin. Lê belê erdên dêrê ne tenê ev bûn, 300 donim erdên din jî hebûn. Rayedarên dêrê ji bo radestkirina van erdan serî li Dadgeha Mafên Mirovan ya Ewropa yê dan.

Dêra Meryem Ana ya li navçeya Hezex'ê ya Şirnex'ê jî yek ji van dêrên bê sihûd e. Erdên vê dêrê jî bi heman kiryaran hatiye desteserkirin. Rayedarên vê dêrê jî ragihandibûn ku wan ev navçe avakirine lê niha hejmara wan çend kes in. Ji bilî gundiyên derdorê Gerînendehiya Qadastroyê jî dest daniye ser 45 hezar donim erdên vê dêrê. Wan jî doz vekirine û li bendêne ku dadgeh biryareke erênî bide da ku erdên xwe bidest bixin.